BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 54 18 Gulan - 24 Gulan 2015 basnews.com

## Pervîn Çakar: Dengbêjî û opera cîran in



R16

# Li Rojava li her derê şer e

Li Rojavayê Kurdistanê li hemû eniyan şer didome. Piştî ku hêzên Peşmerge vekişiya DAİŞ'ê tevî endamên Boko Haram'ê li Kobanê dest bi êrişên nû kirin. Şer li Hesekê, Cizîre, Serêkaniye û navçeyên din gur dibe. Hêzên kurd yekîneyên xwe li van herêman komdike. Li aliyê din li heremê êrişên hewayî yên DYA'yê li ser DAİŞ'ê didomin.

DAIŞ tevî endamên Boko Haram'ê ku ji Afrîka anîbû li nêzî Kobanê û hin navçeyên din bi maşîneyên bombebarkirî êrişan dike û hewldide da ku careke din bajarên Rojava dorpêç bike. Li aliyê din nexweşiyên giran ku ji termên DAİŞ'iyan belav dibin jî dibin sedema xetera tenduristiyê. Ji ber nexweşî û êrîşên ji nûh ve li Kobanê avadanî rawestiya. R02 - 3





## Li Rojhilat çirûska kurdî: Emû Elewî

R16

## Folklor bingeyê edebîyatî yo

R11

## Li Amedê hêviya kurdewariyê geş bû

R15

## "Ez birînê destnîşan dikim"



Firat Cewerî ku yek ji navdartirîn nivîskarên kurd e û bi helbest çêrok û di deh salên dawî de jî bi romanên xwe erênî yan neyênî bala kurdan û cîhana wêyeyî dikêşîne ser xwe, dîsa ji bo karûbarên wêjeyî hate Amedê. Me jî derfet peyda kir ku pirsên di derbarê serpêhatiya wî û berhemên wî yên ku di nav demê de kom bûne jê bipirsin û li ser nîqaşên ku li ser wî têne kirin agahiyan rasterast ji wî bibihîzin. Cewerî bi dilgermî em pêşwazî kir û peyivî. R08-9

## Mahabadê hêrsa xwe nîşan da

Bandora çalakiyên piştî bûyera destdirêjiya keça kurd Ferînaz Xusrewanî ku ji Mahabadê destpê kirin dom dike. Piştî çalakiyên li Mahabadê ku piştî bûyerê rû dabûn, tafilê li bajarên din ên Rojhilat û li yên hemû perçeyên Kurdistanê belav bûbûn û bi sedhezaran kurd ji bo rûreşkirina rejîma Îranê daketibûn qadan û hêrsa xwe diyar kiribûn. R04-5

**Mehmet Gültekin** — Berxwedana Araradê... R13

**Nadire G. Aldatmaz** — Armeniyê no welatî R10

**Welat Baz** — Mahabad R06-7

**Mamend Rojê** — Mahabad û stratejiya Îranê R12

# Li her deverên Rojava şer e

**Mustafa Turan**

Rojava Kürdistanı'nda IŞİD saldırıları devam ederken, tüm cephelerden çatışma haberleri geliyor. Kobanê'deki yenilgiyi diğer Kürd yerleşim yerlerine saldırarak telafi etmeye çalışan IŞİD'in Afrika'dan getirttiği Boko Haram üyeleriyle giriştiği yeni saldırı dalgası Kobanê için yeni bir tehdit unusuru olmaya başladı. ABD ve Türkiye'nin silah sevkiyatı konusunda sorun çıkarması üzerine Erbil'e dönmek durumunda kalan Peşmerge'nin gidişiyle artan saldırılar ağırlıklı olarak mayınlama ve bomba yüklü araçlarla devam ediyor. Kobanê yakınları, Cezîre, Hesekê, Girê Spî ve Serêkaniye'de yoğunlaşan çatışmalarda çok sayıda IŞİD'li imha edilirken ele geçirilen cephanelikler ise savaşın boyutların gözler önüne seriyor.

Li Kurdistana Rojava êrîşên DAİŞ'ê berdewam dikin û li hemû eniyan agahiyên pêvçûnan tên. DAİŞ a ku li Kobanê derbeyeke giran xwer û paş de vekişiyabû ketibû nava hewldana ku heyfa vê yekê ji bajar û navçeyên din ên kurdan bistîne. Bi vê hincetê jî gelek endamên Boko Haram a ji Afrîka anîbû herêmê û gefa ku bi vê hevkariyê hat destpêkirin careke din bo Kobanê û tevahiya rojava dibe xeterekê. Ji ber DYA û Tirkiye'yê destûra hinartina çek û teqemeniyê neda Pêşmergeyên li Rojava neçar mabûn ku vegerin Hewlêrê û piştî vegera Pêşmerge jî DAİŞ'ê careke din ew yek weke derfetekê bikar anî û dest bi çandina mayîn û êrîşên nû kir. Nêzikî Kobanê, Hesekê, Cizîr, Hesekê, Girê Sipî û li Serêkaniyê pêvçûnên dijwar diqewimin û di şer de bi sedan DAİŞ'î hatin îmhakirin. Teqemenî çekên DAİŞ'ê hatin desteserkirin jî ratiya şer nîşan didin.

Şerê ku bi mehan dom kir û di encama xwe de li gel serkeftineke mezin a kurdan a bi alîkariya Pêşmerge, Kobanêyeke xerabe li dû xwe hişt, ji nû ve destpê dike û DAIŞ'ê dîsa dest bi êrîşan kir. Piştî vê serkeftinê û hewldanên destpêkirina jinûve avakirina Kobanê, DAIŞ'a ku vegera Pêşmerge wek fersend dibîne, dîsa dest bi êrîşên mezin û berfireh kir. Ev êrîşên nû ji ber ku bi endamên Boko Haram'a ku DAIŞ'ê ew ji Afrîkayê hanine Sûriyeyê roj bi roj xetertir dibin. Ev êrîşên ku piştî vegera Pêşmerge destpê kirin bi mayinkirin û maşînên bombebarkirî dom dikin. Di van hewlên êrîşê yên DAIŞ'ê yên li herêmên Kobanê, Cizîr, Heseke, Girê Spî û Serêkaniyê ku bi sedan endamên DAIŞ'ê têne kuştin de cebilxaneyên ku têne bidestxistin, asta dijwariya êrîşan jî li pêş çavan radixe. DAIŞ, bi hanîna endamên Boko Haramê hem êrîşê bajarên din ên kurdan dike, hem jî hewl dide ku dîsa Kobanê bixe rewşeke xeter. Lê belê hêzên kurd bi şêweyeke hişk bersiv didin DAIŞ'ê û ji bo DAIŞ ji Rojava bê derxistin di gellek eniyan de şer dikin.

DAIŞ'a ku vegera Pêşmerge weke fersend dibîne çend roj berê bi hemû hêz û çekên xwe yên giran êrîşê başûrê Kobanê kir û piştî pevçûnên mezin ji bêçarî paş ve vekişiya. DAIŞ'a ku di operasyonên hêzên kurd ên ji başûrê Kobanê dan destpêkirin de gellek wundahî dan piştî ku paşve reviya gund û zeviyên vê herêmê dan ber agir. Hatibû ragihandin ku ji ber gellek wundahiyan daye û di nav endamên wê de bûyerên revê zêde bûne DAIŞ, bi hevkarê xwe yê Afrîkayê Boko Haram re plansaziyên êrîşên nû dike. Ji Kobanê'ya ku ji aliyekî ve xebatên jinûve avakirinê dom dikin, destpêkirina koçkirinan, xeteriya van plansaziyên DAIŞ'ê diyar dikin. Hat ragihandin ku hem ji ber nexweşiyên ku ji termên DAIŞ'iyan ên ku di bin kavilan de mane û hem jî ji ber ajalên ku termên DAIŞ'iyan dixwin êrîşê mirovan dikin, hin şêniyên Kobanê dîsa vedigerin Pirsûsê.

DAIŞ'a ku li dij Kobanê amadekariya êrîşên mezin dike, li dij Gundên Til Ehmar û Til Ebirê rojavayê Kobanê ku di destê muxalîfan de ye êrîşên topbaranî pêk tîne, lê lii dij DAIŞ'ê hêzên Bûrqan el Firad û yên kurd jî amadekariyên xwe dikin.

Ji aliyê din ve li Cizîrê jî li dij DAIŞ'ê di qadeke dirêj de şer tê kirin. Hêzên kurd, ji bo Kantonên Kobanê û Cizîrê bigihînin hev, bi taybetî bi hêzeke mezin berê xwe dane Grê Spî. Li Kantona herî piçûk Efrînê jî rewş aram xuya bike jî, rêvebirên kantonê destnîşan dikin ku bajar ji çar alî dorpêçkirî ye û her gav egera êrîşan heye.



## Li Hesekê hêzên kurd pêş ve diçin

Li Hesekê'ya ku DAIŞ ji meha Adarê ve êrîşan pêk tîne, di navbera hêzên kurd û DAIŞ'ê de pevçûnên dijwar rû didin. Hate ragihandin ku hêzên kurd li rojavayê bajar êrîşeke mezin pêk aniye, gundên Mişerfa, Til Eşra, El Kanad û Amrû ji DAIŞ'ê stendine û di encama êrîşê de gellek wundahî daye DAIŞ'ê. Hate ragihandin ku di vê êrîşa bi hevkariya frokeyên hêzên hevpeyman pêk hatiye de, YPG'ê herêmên bejayiya rojavayê Çiyayê Ebdulezîz xistine bin kontrola xwe.

## Reva DAIŞ'ê didome

DAIŞ, her çiqas hêzên xwe berhev bike û êrîşên xwe yên li ser Kurdistanê bidomîne jî, ji ber parastina hêzên kurd, ji bêçarî paş ve direve. Piştî ku YPG'ê gundê Rezazê ku yek ji grîngtirîn eniyên li ser rêya Çiyayê Ebdulezîzê ye, hate ragihandin ku endamên wê yên li herêmê piştî şewitandin û bi mayinkirinan, ji wan gundan dest bi revê kirine. Hate ragihandin ku DAIŞ'ê heta niha sê êrîşên maşînên bombebarkirî pêk haniye, lê ji aliyê din ve jî li eniyên Til Temir û Serêkaniyê bi dehan gund û gom ji dest DAIŞ'ê hatine derxistin û gellek endamên wê hatine kuştin. Tê gotin ku endamên DAIŞ'ê ku di pevçûnan de têk diçin, kincên sivîl li xwe dikin û direvin.

## DAIŞ têk diçe

Tekoşîna li dij DAIŞ'ê ya ku li hemû eniyên Rojava û Başûr di xeteke dirêj de dom dike, li Cizîrê jî di eniyeke 200 kîlometrî de dom dike. Hevserokê Yasadan a Kantona Cizîrê Hekîm Xalo da zanîn ku di qada ji Kantona Cizîrê heta xeta Şengalê û Grê Spî, du meh in, li dij DAIŞ'ê şer heye. Xalo got: "Di dirêjahiya 200 kîlometrî de li dij DAIŞ'ê şerekî giran tê meşandin. Bi taybetî di van rojên dawî de serkeftinên mezin hatin bidestxistin û gellek dever ji dest DAIŞ'ê hatin derxistin. DAIŞ têk diçe û ji gellek gund, gom, navçe û bajaran derdikeve. Ji ber serkeftinên YPG/YPJ'yê morala gel baş bûye. Xalo ragihand ku rewşa bajarê Cizîrê aram e û jiyana asayî dom dike, ji ber ku dema çandiniyê ye gelê herêmê li kar û barê xwe ye û ger ku li gor pêşbîniyên wan bimeşe, wê çandinî rewşa aborî jî baştir bike.

## DAIŞ êdî li Hesekê ne xeter e

Xalo destnîşan kir ku hêzên kurd li Hesekê gellek gund û navçeyan ji DAIŞ'ê rizgar kirî ye û got: "Berê DAIŞ, pir nêzîkî Hesekê bû. Lê niha nêzîkî 15-20 kîlometr dûrê bajêr e. Êdî ew şiyaniya wê ya ku xeteriyê peyda bike tune ye. Operasyona YPG' ya rizgarkirina gundan ku çend roj berê dabû destpêkirin, bi serkeftî dom dike. Navenda DAIŞ'ê jê hate stendin û ew ji bajar hate dûrxistin. YPG/YPJ û hêzên ku piştgiriyê dikin hev bi hev re têdikoşîn. Li Hesekê rewş aram e û tirsa berê nemaye. Berê ava Xabûrê bi tevahî di dest DAIŞ'ê de bû, lê îro ew xet tev di destê YPG'ê de ye. Ne tenê ev der, her wiha bejayiya Çiyayê Ebdulezîz ku cihekî pir stratejîk e jî di dest me de ye. Ev xeta ku Serêkaniyê û Til Temirê jî dihundurîne berê di destê DAIŞ'ê de bû lê ev xet bi tevahî kete destê me. Tenê çend gundên Asûrî yên li alî Til Temirê di dest wê de mane. Ji ber tirsa têkçûnê DAIŞ hêdî hêdî ji wan deran jî direve"



## Hêzên rejimê bêdeng in

Xalo ragihand ku hêzên rejimê li hember guherînên li herêmê bêdeng in û dom kir: "Dema em bi DAIŞ'ê re şer dikin, hêzên rejimê weke her gavê tenê temaşe dikin. Heta ji şerkirina me kêfxweş dibin. Vê yekê li gor berjewendiyên xwe dibîne" Xalo destnîşan kir ku rejim hewl dike ku ji hozên ereb ên herêmê hêzeke taybet peyda bike û got: "Lê belê ji ber ku li Idlîb û derdorên Şamê şikestinên mezin xwer, rejim niha bêdeng e û tenê li herêmên di bin kontrola xwe de xwe diparêze. Ez niha dikarim bêjim ku Qamişlo û Hesekê bi aram û parastî ne. Di hemû eniyên herêmên ku kurd lê dijîn de pevçûn dom dikin"

## Rêya ku Kobanê û Cizîrê digihîne hev Grê Spî ye

Li Grê Spî ku ji ber Başûr û Rojava digihîne hev cihekî pir stratejîk e û niha di dest ereban de ye, hêzên kurd, li gel hêzên herêmê, li dij DAIŞ'ê dest bi şer kirî ye. Tê ragihandin ku Girên Helo ku cihekî pir stratejîk e û ji bo kontrolkirina bejahiya herêmê derfetên mezin peyda dike, ji alî hêzên kurd ve hatiye bidestxistin. Xalo destnîşan kir ku Grê Spî ji bo DAIŞ û dewletên nêzîk û kurdan herêmeke pir stratejîk e û got: " Di xeta ji Til Ebyadê heta Serêkaniyê de sînorê Bakurê Kurdistanê ji DAIŞ'ê re vekirî ye. Lê em baş dizanin ku kesên sivîl yên ku ji bo pêdiviyên xwe yên jiyanê terxan bikin, dema dixwazin di sînor de derbas bibin, têne kuştin. Baş tê zanîn ku li tevahiya herêma ku di destê DAIŞ'ê de ye DAIŞ bi serbestî tevdigere. Ji ber vê yekê ev der hem ji bo DAIŞ'ê, hem jî bo me û hem jî ji bo Tirkiyeyê cihekî pir grîng û pir stratejîk e. Ji bo ku em dikaribin Kobanê û Cizîrê bi hev re pêwend bikin, hewl didin ku vê herêmê azad bikin"

## Li Kobanê pêvajoya jinûve avakirinê lezgîn bû

Piştî şerekî mezin û giran, li Kobanê xebatên paqijkirin û avakirinê lezgîn bûn. Hevşaredarê Kobanê Mistefa Abedîn da zanîn ku piştî konferansa li Amedê ew vegeriyane Kobanê û tafilê dest bi xebatan kirine û got: "Ji Bakurê Kurdistanê, bi taybetî jî ji şaredariyan, ji bo paqijkirinê alîkariya maşînan û ji bo qaqijkirina ji mêşûmoriyan alîkariya dermanên kujer distînin. Ji bo bajarê nû me cihekî destnîşan kir lê nîqaşên li ser cih dom dikin. Ji bo jinûve avakirinê hemû komîteyên pêwîst hatine damezirandin"

## 'Venekirina deriyê sînor pirsgirêkeke mezin e'

Abedîn pêwîstiya hanîna perçeyên jeneratorên kevn destnîşan kir û da zanîn ku ji ber deriyê sînor ê miştenûrê bi fermî nehatiye vekirin ew nikarin van perçeyan bînin. Abedîn diyar kir ew hewl didin ku xebatên perwerdehiyê bê kêmasî berdewam bibin û ji bo şêniyên ku vegeriyane Kobanê ji alîkariyan bêpar nemînin jî got ku wan ji bo hemû malbatan nasname derxistine. Abedîn di derbarê karûbarên tendurustiyê de jî da zanîn ku li gel hemû bêderfetiyan ew xebatên xwe dimeşînin û got: "Gellek kêmasî û bêderfetî hene. Ji ber ku deriyê sînor bi fermî nehatiye vekirin, di hanîna alîkariyan de jî astengî derdikebin. Li gel ku em her tim daxwaz dikin jî derî bi fermî nayê vekirin û ev yek dibe sedema pirsgirêkan"

## Nêzîkî 100 hezar kes li Kobanê dijîn

Abedîn ragihand ku beriya şer gelheya Kobanê ji 500 hezaran bêtir bûye, lê belê heta niha nêzîkî 100 hezar kes vegeriyane û got: "Li gor lêkolînên ku me kirine, beriya şer li Kobanê 400-450 hezar kes hebûye, piştî destpêka şerê navxweyî ev hejmar gihîştiye 500 hezaran. Niha jî her roj bi sedan kes vedigere. Li gor lêkolînên me li gel gundan, niha nêzîkî 100 hezar kes vegeriyane Kobanê. Li vê derê jiyan zor e. Mal xerabe ne, kar tune û gellek kes ji bo xebatê ji bêçarî vedigerin. Heta niha me tenê karibû kuçe û kolanan vala bikin. Lê di derbarê paqijkirinê de me heta niha nekaribû tiştekî bikin. Me cenazeyên ku dîtin dev derxistin. Ji bo mayinan jî pispor li vê derê xebatên xwe dimeşînin. Navenda bajar bi tevahî hate paqijkirin û li gundan jî xebat dom dikin. Di mijara mayinan de em herî zêde ji gundan ditirsin, lewre li gundan gellek kesên sivîl jiyana xwe ji dest dan.

## 'Divê Başûr lez bide şandina alîkariyan"

Abedîn ragihand ku ji Bakurê Kurdistanê heta niha 3 Şande hatine û lêkolînan kirine û got: "Lê belê ji perçeyên din, di warê pratîkê de heta niha tiştek nehatiye kirin. Her çiqas carinan di derbarê alîkariyên mirovî û yên ji bo jinûve avakirinê hin daxuyaniyan bidin jî heta niha di pratîkê de tiştek nehatiye kirin. Çend roj berê ji Başûr komek endezyar hatin Kobanê, hin lêkolînan kirin û soz dan ku ew ê alîkariyê bikin. Em ji Başûr daxwaz dikin ku lez bide şandina alîkariyan. Pêşmerge hat Kobanê bi me re li dij DAIŞ'ê şer kir, lê belê ji bo bajar û şarevaniyê heta niha tu alîkarî nehatiye kirin"



## 'Her çiqas em di pozisyona êrîşê de bin jî em dorpêçkirî ne'

Abedîn destnîşan kir ku li Kobanê rizgarkirina gundan dom dike û got: "Li vê derê êdî şer di bin kontrola me de dimeşe û her roj em gundên din jî rizgar dikin. Bi taybetî li aliyê başûr-rojavayê bajêr, gellek gund hatin rizgarkirin. Em di pozisyona êrîşê de ne, lê belê em nikarin bêjin ku xeterî tune ye, lewre em ji her alî ve dorpêçkirî ne"

## Ji Tirkiyeyê gule berdidin gundên Efrînê

Ambargo û pirsgirêkên sivîlên li ser sînorê Kantona herî piçûk a Rojava Efrînê ku bi tu derekî ve pêwendiya wê tune ye jî dom dikin. Hevserokwezîra Kantona Efrînê Hêvî Mistefa da zanîn ku bajar ji çar aliyan ve hatiye dorpêçkirin. Mistefa got: "Li her aliyê me DAIŞ heye û deriyê sînor girtî ye. Carinan şêniyên me bêçar dimînin ku ji sînor derbas bibin, lê belê li ser sînor rastî skencê, gulebaranê û hemû zilm û zordariyê dibin. Leşkerên tirk her wext guleyan berdidin gundên me yên nêzîkî sînor. Ji ber vê yekê şêniyên van gundan nikarin biçin ser zeviyên xwe û karê çandiniya xwe jî bikin. Mistefa diyar kir ku di derbarê başkirina têkiliyan de ew her dem bang li Tirkiyeyê dikin û hewl didin ku pêdiviyên cîrantiya baş bi cih bînin û got: "Vî aliyê sînor di bin kontrola hêzên me de ye. Lê belê me heta îro tu guleyekî bernedaye wî alî. Mixabin niyeteke Tirkiyeyê ku bi me re têkiliyên baş pêk bîne tune ye. Ev yek diyar dike ku nêzîkahiya Tirkiyeyê ya ji pergala me ya xweseriya demokratîk ne baş e. Lê belê em her dem tînin ziman ku bi vê pergala xwe, em dixwazin bi şêweyeke aştiyane, bi Tirkiyeyê re têkiliyeke baş a cîrantiyê saz bikin"

## 'Her dem egera êrîşa li hemberî kurdan heye'

Mistefa diyarkir ku ku di şerê ku ew 4 sal in didome de mixalîfên Sûriye'yê di her fersendê de êrîş li hemberî kurdan dane destpêkirin û wiha domkir, "Ne tenê li Efrînê, ew dixwazin ku êrîşî hemû xaka Rojava bikin. Ji ber ku sîstema li Rojava mînakeke demokrasî, aştî û biratiya li herêmê ye û temînata aştiyê ye. Ew system xizmeta berjewendiyên wan nake.". Mistefa herwiha di axaftina xwe de diyarkir ku li Şêxmeqsût a Helebê taxa kurdan tê xwestin ku rewşeke ragêşî bê afirandin û wiha domkir, "Li vê taxê kurd, ermen, ereb û mesihî bi aştiyane bi hev re dijîn. Lê komployên bi vî awayî didomin. Em jî li hemberî vê her tim tevdîrên xwe digirin. Lê her tim jî egera ku êrîşî me bikin heye. Em her tim amade ne. emê pêngava xwe ya demokrasiyê bidomînin û bigîhîjînin encamê û li hemberî qomployên li hemberî me jî her baldarbin û bersivê bidin."

## Rojeva NATO'yê DAİŞ e

Tevî operasyonên hevpeymaniya navnetewî rojeva NATO'yê jî DAİŞ e. Wezîrên karên derve yên dewletên endamên NATO'yê li Antalya'yê civiyan û di rûniştina Konseya Atlantîk a Bakûr de meseleya DAİŞ û şer hat rojevê. Sekreterê Giştî yê NATO'yê Jens Stoltenberg di axaftina xwe ya destpêka civînê de wiha got, "Li rojhilat bi mebesta guhertina sînoran bikaranîna hêzeke pir zelal heye. Bûyerên şîddetê li başûr gihîştine asteke ku nedihat texmînkirin. Di rewşeke wiha de NATO wê parastina hemû endamên xwe bidomîne. Emê li vir di derheqê zordariyên dem dirêj ku em pê re rû bi rû ne û li ser encamên wan ên di demeke nêz de bisekinin. Bo vê jî emê li dijî DAİŞ'ê têkoşîna xwe bidomînin."

# Mahabadê hêrsa xwe nîşan da

Bandora çalakiyên piştî bûyera destdirêjiya keça kurd Ferînaz Xusrewanî ku ji Mahabadê destpê kirin dom dike. Piştî çalakiyên li Mahabadê ku piştî bûyerê rû dabûn, tafilê li bajarên din ên Rojhilat û li yên hemû perçeyên Kurdistanê belav bûbûn û bi sedhezaran kurd ji bo rûreşkirina rejîma Îranê daketibûn qadan û hêrsa xwe diyar kiribûn.

Çavkaniyên ji herêmê didine zanîn ku sedemê vî bayê hêrsê yê ku li dij rejima Îranê gurr bûye, ne tenê bûyera destdirêjiya keça kurd e, her wiha sedem polîtîkayên rejîma Komara Îslamî ya Îranê ku li ser kurdan dimeşîne. Analîstên Rojhilatî diyar dikin ku ji ber zêdebûna darvekirina zindaniyên siyasî yên kurd, xizankirina bajarên kurd û zordariya li ser civaka kurd, jixwe di nav civaka kurdên Rojhilat de hêrsek berz bûbû û ev bûyer bû sedem ku ev hêrsa Rojhilat xwe şanî rejîmê bide.



## Ev hêrsa civaka kurd e

Weke tê zanîn hefteya çûyû li Mahabadê, li Otêl Tarayê keça kurd Ferînaz Xusrewanî ku li otêlê dixebitî rastî destdirêjiya endamên îstixbarata Îranê Îtlaatê bûbû û ji bo nekebe destên wan xwe ji qata çaran a otêlê avêtibû û jiyana xwe ji dest dabû, li gelê Mahabadê daketibû qadan, Otêl Tarayê şewitandibû û ziyanê dabûn hin dezgehên fermî. Piştî Mahabadê, çalakî li hemû bajarên Rojhilat belav bûbûn û li bajarên perçeyên din ên Kurdistanê jî çalakî û xwepêşandanên ji bo piştgiriya gelê Mahabadê û rûreşkirina dewleta Îranê pêk hatibûn.

Jêderên ji Rojhilat radigihînin ku ji ber ku rejima Îranê bi 10 salan e, li dijî gelê kurdên Rojhilat siyaseteke tûnd dimeşîne, hemû xebatên siyasî bi sêdarkirinê dibersivîne, hewl dide ku ciwanên kurd bi tîryakê têxe tora xwe û wan ji xebatên siyasî dûr bixe, herêmên ku fars û azedî lê dijîn di warê aborî de bi pêş dixe û li dij vê yekê herêmên kurd bi xizaniyê terbiye dike, di nav kurdên Rojhilat de hêrseke mezin ku ji bo biteqe li sedeman geriya ye kom bûye û ev bûyera Ferînaz Xusrewanî bûye sedem ku ev benda hêrsê biteqe. Her wiha didine zanîn ku serhildana gelê Rojhilat ne bi rêxistinkirina hêzên siyasî û leşkerî yên Rojhilat pêk hatiye, ji alî gel ve bi şêweyeke sirûştî pêk hatiye

## Encam ne diyar in

Hefteya çûyî, dema ku çalakî hîna dom dikirin, berpirsên rejîma Îranê piştî demeke bêdengiyê ragihandibûn ku di çalakiyan de 7 jê endamên asayîşê, bi giştî 27 kes birîndar bûne. Waliyê Mahabadê Cafer Ketanî jî bi ser Ajansa Fermî ya Îranê ÎRNA'yê angaştibû ku bersûcê kuştina Ferînaz Xusrewanî ne endamê dezgeheke fermî ya dewleta Îranê, xebatkarekî otêlê ye. Ketanî, gotibû ku bersûc hatiye destgîrkirin û di derbarê bûyerê de lêkolînên hatine destpêkirin. Ketanî di derbarê lêkolînan de jî gotibû ku hemû delîl û tomarên têlefonan ji bo lêkolînê têne berhevkirin û piştî lêkolîn biqedin ew ê encamên wê ji raya giştî re eşkere bikin. Li gel vê daxuyaniyê di derbarê bûyeran de agahiyên berfirehtir ji çapemeniyê re nehatine ragihandin. Ji alî din ve malpera nûçeyan a KurdPa'yê ragihand ku di çalakiyên li Rojhilatê Kurdistanê de li Mahabadê 26 kes birîndar bûne û 150 kes hatine destgîrkirin, li Serdeştê 6 kes birîndar bûne û 32 kes hatine destgîrkirin, li Sine 3 û li Nexedê jî kesek hatine destgîrkirin. Her çiqas rayedarên rejimê van agahiyan bidin jî agahiyên ku van derew derdixin jî tên.

Çalakvanê sivîl Azad Mahabadî di derbarê encamên çalakî û bûyeran de ragihand ku ji ber li Îranê dezgeheke navneteweyî yan jî sivîl ku karê şopandina binpêkirina mafê mirovan bike tune ye, dewleta Îranê hemû bûyeran berovajî derdixe û di serhildana Mahabadê de jî heman şêweyê pêk tîne. Mahabadî da zanîn ku ji ber li Îranê û bi taybetî li Rojhilatê Kurdistanê tirseke mezin heye û aktîvîstên sivîl û rojnameger nikarin bi serbestî bûyeran bişopînin, di derbarê encamên bûyeran de raya giştî ya Rojhilat nikare bigihîje agahiyên rastîn.



## 'Reformîst nahêlin bûyer mezin bibin'

Çalakvanê Sivîl Azad Mahabadî di derbarê serhildana ku li Rojhilatê Kurdistanê pêk hat de ji BasNûçeyê re axivî. Mahabadî diyar kir ku li Rojhilatê Kurdistanê beşek reformîst ku pêwendiya wan û rejîmê baş e û dixwazin bi hin mafên piçûk pirsgirêka Rojhilatê Kurdistanê bitepisînin, piştî serhildanê derketine meydanê û xwepêşanderan rexne dikin. Mahabadî di derbarê van reformîstan de wiha dom kir: "Ev beşa reformîst di dema Hatemî de derketin pêş. Hatemî hin kar û derfet dane wan û rewşa wan a aborî baş kir lê daxwazên beşa mezin a kurdan piştguh kir. Ji ber vê yekê kurdan hêviya xwe ji Hatemî birrîn. Piştî ku Rûhanî gellek soz dan gelê kurd û bi saya rayên kurdan hate ser kar, ji Hatemî xerabtir bû. Piştî Rûhanî hat, tirs, malwêranî, zindanîkirin, kuştin, sêdarkirin zêdetir bûn û narazîbûna kurdan jî zêdetir bû. Ev pêkanînên dema Rûhanî ku bi rayên kurdan hate ser kar nîşanî kurdan da ku siyaseteke Îranê ya li dij kurdan heye û li gor konjokturê carinan hişk dibe carinan jî nerm dibe û ji bilî vê siyaseta resmî hatin û çûna Hatemî yan jî Rûhanî tev formalîte ne" Mahabadî, de derbarê armanca ev beşa reformîst de jî diyar kir ku ew li aliyê rejimê ne û armanceke wan heye ku gelê kurd têxin bin bandora xwe û kurdan ji xeta azadiyê dûr bixin.

Azad Mahabadî, di derbarê bûyera xwekuştina keça kurd Ferînaz Xusrewanî de jî da zanîn ku dewletê ji bo rengê vê bûyerê biguherîne hin dîmenên kamêrayên otêlê ku goya yên Ferînaz in belav kirî ye ku tê de endamên Îtlaatê nayên dîtin û got: "Lê belê ev dîmen ne rast in. Malbata Ferînaz Xusrewanî bixwe jî dane zanîn ku ew kesa ku di dîmen de xuya dike ne keça wan e" Mahabadî her wiha da zanîn ku ew dîmenên ku hatine belavkirin ne dîmenên roja bûyerê yên rojek beriya bûyerê ne.

## Îtlaat ji malbatên girtiyan pere dixwaze

Hate radihandin ku malbatên zarokên wan hatine destgîrkirin dema ku çûne serî li Şaxa Îtlaata Dezgeha Sîxurî ya Îranê dane endamên Îtlaatê di bergîdana berdana zarokên wan 50 milyon tumen pere ji wan dixwaze. Malbatên ku ji ajanseke kurd a ji herêmê re axivîne dane zanîn ku rejîm heta niha bi tu awayî nehiştiye ku ew zarokên xwe bibînin, di derbarê aqûbeta wan de tu agahiyekê nadin wan û ji ber vê yekê malbat bi tirs û xof in. Ji ber ku dezgeha dewleta Îranê ya herî xeternak dezgeha wê ya îstixbaratê Îtlaat e, ev destgîrkirinên ku ji aliyê Îtlaatê ve têne kirin ji berê ve di nav gelê Rojhilat de cihê tirsnakiyê ye. Tê gotin ku ev destgîrkirinên ku piştî çalakiyên ji bo nerazîbûna destdirêjiya keça kurd Ferînaz Xusrewanî destpêkirin bi awayekî sîstematîk hatin kirin hê jî dom dikin.




## Boykot destpê kirin

Piştî ku bûyer û çalakî hinekî rawestiyan û rejîmê dest bi destgîrkirina kesên ku goya beşdarî çalakiyan bûne kir, di 14'ê Gulanê de li Mahabad û hin bajarên din ên Rojhilat, bi bangewaziya hin çalakvanên siyasî û yên sivîl kurdan dest bi boykota şermezarkirinê kirin û dergeh û deraveyên kargeh, aşxane, dukan û hemû cûre dezgehên xwe yên dan û stendinê girtin. Di destpêkê de Mahabad û Sine û dûre jî Şîno, Merîwan, Bokan, Urmiye, Pîranşar û Serdeşt tevlî vê boykotê bûn û hemû dergehên xwe yên bazarî radan. Di derbarê van boykotên ku li gellek bajarên Rojhilat bi beşdariyeke mezin hatin destpêkirin de Rojnamegerê Rojhilatî Nasir Babaxanî ji BasNûçeyê re ragihand ku ev tevlîbûna mezin a boykotkirinê nîşaneya wê yekê ye ku gelê kurd ê Rojhilatê Kurdistanê çiqas ji rejîmê hêrs bûye, lewre li Îranê çalakiyên bi vî rengî qet nayêne dîtin.

## 'Hêzên ku anîne Mahabadê bi erebî dipeyivin'

Piştî ku li Mahabadê serhildanê destpê kir û rejima Îranê ji bo bergiriyê ji Urmiye û gellek bajarên din hêzên xwe arasteyî Mahabad û bajarên din ên Rojhilatê Kurdistanê kirin û rewşa awarte hate olankirin, girtina kurdan dest pê kir. Li Mahabadê ku li gel hêzeke mezin a asayîşê lê hatiye bi cihkirin jî boykota ji bo şermezarkirina rejîmê dom dike. Jêderekî ji Mahabadê ku ji ber ewlehiyê nexwest navê xwe aşkere bike da zanîn ku ev çalakî û xwepêşandanên ku li Rojhilatê Kurdistanê pêk hatine ne di bin serperiştiya hêzên siyasî û leşkerî pêk hatiye û bi tevahî ji alî gel ve hatiye organîzekirin. Di berdewamiya axaftina xwe de jêder balê kêşa ser hêzên ku rejîmê ji bajarên din ên Îranê hanîbû li Mahabadê bi cih kiribû û da zanîn ku di nav endamên ew hêzên ewlehiyê de kesên ku bi erebî dipeyivin hatine dîtin û ev yek jî di nav gel de bûye sedema gumanan. Di derbarê vê mijarê de jî Çalakvanê Sivîl ê Rojhilatî Azad Mahabadî da zanîn ku di lîsta kujerên Îranê yên ku siyasî, rewşenbîr û kesên sivîl ên kurd kuştine de çend navên ereb jî hene. Mahabadî got: "Di nav Hêzên Bedir de kesên ereb hene. Her wiha hevkariya hin grûbên çekdar ên Lubnanî û Îran jî heye û hin erebên şiaperest ên ku di nav hêzên çekdar ên Îranê de cih digirin jî hene. Mirov dikare gumana Heşdî Şabî jî bike, lê ji ber ku ew li Iraqê şer dikin, ev egerî hinekî zehmet e"

## 'Siyasî di rêxistinkirina gel de pir qels in'

Mamosteyê berê yê Zanîngehê û Rojnamegerê Rojhilatî Nasir Babaxanî di derbarê bûyer û encamên wan ên li Mahabad û hemû bajarên Rojhilatê Kurdistanê rûdan de ji pirsên BasNûçeyê bersivand. Babaxanî diyar kir ku ev çalakî û xwepêşandanên ku piştî bûyera destdirêjkirina keça kurd Ferînaz Xusrewanî ku bi xwekuştina wê bi encam bû destpê kirin, li Rojhilat potansiyeleke mezin a serhildanê derxistiye holê. Babaxanî da zanîn ku her çiqas potansiyeleke mezin derketibe holê jî, ji ber ku ji alî partiyên siyasî û leşkerî yên kurd nehate koordînekirin ev çalakî û xwepêşandan dikare bi ziyanên mezin ên gelê Rojhilat jî bi encam bibe. Babaxanî rexne li aliyên siyasî yên kurd kir ku gelê Rojhilat ji bo serhildanên bi vî rengî re amade û bi rêxistin nekirine û dom kir: "Ger ku gel bi rêxistin bûya û li gor plansaziyekê vê serhildana bi heybet pêk hanîbûya, wê encamên pir mezin û grîng derketina holê. Îran di warê geşadankirina herêman de guh bi herêma Rojhilatê Kurdistanê nake, li gel ku pereyeke baş ji bo avadankirina herêmên din ên ku fars û azerî lê dijîn dike jî, qet mesrefek li Rojhilat nake, bi her awayî li ser Rojhilat çewisandin û bişaftinê pêk tîne. Ji ber ku bayê azadiyê yê ku bi deh salan e li Başûrê Kurdistanê bi destkeftiyên mezin bi encam bûye û li Rojavayê Kurdistanê bi şerê navxeyî yê Sûriyeyê re, li gel êş û azarên mezinbe jî kurdan ta radeyekê mafê azadî û xweparastinê bi dest xistiye dewleta Îranê ji kurdên Rojhilat pir ditirse û hemû polîtîkayên xwe li ser pêknehatina alozî û gengeşiya Rojhilat dimeşîne. Lê belê di vê serhildana gelê Rojhilat de diyar dibe ku partî û rêxistinên Rojhilat di derbarê birêxistinkirina gel de pir qels in. Gel bi rêxistin nekirine û plansaziyeke wan a wisa tune ye" Nasir Babaxanî diyar kir ku ev serhildana ku li Mahabadê destpê kir û li hemû bajaran belav bû, bi şêweyeke sirûştî û ji alî gel ve pêk hatiye û ger ku ev serhildan li gor plansaziyekê pêk hatibûya wê encamên mezintir derxistina holê. Babaxanî got: "Li gel her tiştî, dîsa jî ev serhildan, ji ber ku potansiyela nerazîbûna kurdan a li dij rejîma Îranê nîşan da baş bû û ji bo siberoja Rojhilatê Kurdistanê hêviyeke mezin di dilê kurdan de der kir"



## 'Kurdên li derveyê Rojhilat in meseleyê baş tênagihîjin'

Gellek caran di derbarê Rojhilat de mirov rastî nirxandinên ku kurdên ji ber sedemên siyasî yan jî aborî ji Rojhilat direvin û diçin, ji civaka xwe ya berê dûr dikebin, bi taybetî yên ku diçin Ewropa û welatên din ên pêşketî, di nav civakên wan welatan de ji rastîniya civaka xwe dûr dikebin û biyanîbûnê dijîn. Rojnameger Nasir Babaxanî jî di ragihandinên xwe yên ji bo BasNûçeyê de balê kêşa ser vê mijarê û diyar kir ku li gel pêknehanîn rola xwe ya partiyên siyasî yên Rojhilat, di ser medyaya civakî ya kurdên Rojhilat de jî dezenformasyoneke ku ji rastiyê dûr e pêk hatiye û got: "Bi taybetî ji alî kurdên ku bi salan e li derveyî welat an jî li derveyî Rojhilat dijîn, bi ser facebook û torên înternetê ve roleke ne baş dileyîzin. Dewleta Îranê ne dewleteke demokrat ku mafê azadiya mirovan, mafê nîşandana nerazîbûn û xwepêşandanan pêkan bike. Li Îranê dîktaroriyeke olî heye û her tevgerîneke mirovan a nerazîbûnê dikare bibe sedemê kuştina mirovan. Gellek rewşenbîr û çalakên siyasî yên Rojhilatî hene ku 20 salin li Başûr, Tirkiye, Ewropa yan jî li welatekî din dijî lê nizane ku di 20 salên dawî de li Îranê çi guherîn çêbûne, nêzîkahiya rejîmê ya li dij kurdan çawa ye. Ji ber vê yekê bi ser torên civakî yên înternetê atmosfereke ne rasteqîn peyda dikin. Lê belê li Rojhilat her bizaveke piçûk a nerazîbûnê dikare bibe sedemê kuştina mirovan an jî bi salan

Bajarê xeyala serxwebûnê

# MAH ABAD 2



**Welat Baz**

Mahabad ji ber taybetiyên xwe yên netewî û siyasî ji mêj ve bûye hêlîna gellek rewsenbîr, nivîskar û şairan. Bajar li Kurdistanê yek ji navendên çand û wêje ya kurdî ye.

Xwediyê ferhenga yekem a kurdi. Hejar Mukriyanî û Şêxûlîslamê Mukriyan Hêmin ku wek helbestvanên netewî hatine xelatkirin ji Mahabadê ne.

Dema nave Mahabadê tê Iêvdan, helbestvanên wek Rehîm Wefayî û Ebulhesen Seyfûlqûzart tên bira mirov. Nivîskar Evdilrehman Zabihî û xwedî çapxana yekem li Kurdistanê Gîw Mukriyanî jî ji Mahabadê derketine.

Gelek şexsiyetên ku di têkosîna netewî de wek sembol hatine naskirin jî ji vî bajarîne. Qazî Mihemed, Rehîm Qazî, Ubeydullah Eyûbiyan, Mihemed Samedî, Mihemed Qazî, Dr. Haşim Şîrazî, Ehmed Qazi, Mihemed Mamlî, Ezîz Şarûx, Manîc Heyran û gellekî din,di nav kurdperwerên Mahabadê ne.

Li ser Mahabadê Hêmîn. Hejar û gelek kesên din helbestan nivisandine. Herwiha Mihemed Mamlî, Nasir Rezazî, Mikaîl û Ezîz Şarûx jî li ser bajêr stran gotine. Niviskar Jan Dost jî Ii ser Mahabadê romanek nivisandiye.

Qebristana Mahabadê bi gorên rewsenbîr û şehîdan ve xemilandiye. Hebûna bîranînên van sexsiyetên giranbiha. qebristana Mahabadê kiriye ziyaretgah.

## Navenda xeyala dewletbûna kurd

Mahabada peytexta dilê kurda navenda xeyala dewletbûn û serxwebûna kurdan e. Serokê Komara Kurdistanê ya sala 1946'an Qazî Mihemed ji vî bajarî li cihê ku Komara Kurdistanê ragihandine tevî hevalên xwe li vî bajarî hatiye dardekirin û li vê qebristana vî bajarî hatine veşartin. Herwiha Melle Mistefa Barzanî demek dirêj li vê heremê maye û li Mahabadê jiya ye. Qebra Mele Mistefa jî demeke dirêj li Mahabadê maye.

Li qebristana Mahabade ji Seroke PDK ya Îranê Sadik Serefkendî heta hunermend Mihemed Mamlî, peşmerge û gerîllayên partiyên kurd, gelek kedkar û dildarên vî welatî li kêleka hevûdû radizên.

Mahabad di warê hunermendî û dengxweşiya xwe de jî bajarekî naskiriye. Hunermendên wek Ezîz Şarûx, Xelîl Sidiqî, Menîc Heyran, Mikayil û Qadir Seyahî ji Mahabadê ne û helbet Mihemed Mamlî ye bilbilê Mahabadê...

## Mizgefta Sor

Ji rêvebirên Mahabadê Mir Bûdaxê Mukrî ji bo avedaniya Mehabadê gelek kar kiribû. Pira Sor, Mizgefta Sor, Kerwanseray, hemam, qanalên evê yên nav bajêr. Avbendên nav bajer hemû yadîgarên dema Siltan Bûdax in. Ji ber keda Siltan Bûdax îro hin jî qebra wî wek ziyaretgah e.

Ji van berhemên giranbiha îro Mizgefta Sor li ser piya ye. Mizgefta Sor Ii kêleka Rûbarê Mahabadê hatiye avakirin. Ev mizgeft bi navê Mizgefta Bûdax Sûltan jî tê naskirin. Di sala 1089ê qemerî hatiye avakirin. Sarimbegê Mûkrî hingê hakimê bajêr bûye û şûnewarên wek mizgefta Sor û Pirdî Sor yadîgarên dema hukumdariya wî ne. Avahî bi kevir, dar, kerpîç, gûr û kilsê hatiye çêkirin. Jêr avahiya mizgeftê 300 metre û panatiya wê jî 150 metre ye. Asasê mizgefte li ser 10 stûnên kevirin 18 gunbedan hatiye danîn. Mesafa di navbera her sitûnekê 4.5 metre ye. Ji bilî îbadetê meleyên Kurd li medresa vê mizgeftê dersên olî didin feqiyan.

## Bajarê dîrokê

Li herema Mahabadê gelek berhemên dirokî yên wek kelê, xan, hemam, qebr, bajarê kevn û deverên arkeolojîk hene. Kevnbûna van berheman bi giştî di navbera 5 hezar sal beriya zayînê ta heta dema Islamê direj dibe. Di nav şûnewarên dirokî yên herema Mahabadê de: Mizgefta Sor, Dijqelata Gundê Indirqaşê, Şarwêran, Diryas û Gohtepe ku ji dema Medan mane, Girdi Beyat, Girê Sêgirdan, Girdî Qeçîabad, Girê Kakabad li bakûrê Mahabadê ne û heta 5000 sal ji beriya zayîne mane, Gire Dêrînê Dartûwan li rojhilatê Mahabadê ye û 1000 sal ji beriya zayînê maye, Girê Dêrîns Piştep û Girê Cin, Girê Şib li başûrê Mahabadê ne û 2000 sal ji dema Med û Sasaniyan mane, Tawus Tepe, Gir û goristana Çardîwar, Girê Şarezorê Ii herêma Mengoran ji dema Sesaniyan mane û Girê Mirgind li Mahabadê ye û ji sedsala dûyem beriya zayinê maye.

Ji berhemên dirokî yên herema Mahabadê herçend gelek hin jî Ii ser piya mabin jî, hinek ji wan jî xera bûne. Rejime Îranê siyaseta ruxandina berhemên dirokî yên Kurdistanê bi zenebûn meşandiye da ku Kurdistan li cîhanê bi arkeolojiya xwe ya zêrîn û dîroka xwe ya dewlemend bal nekşîne.

## Feqreqa

Yek ji bermahiyên Mahabadê Feqreqa ye ku ji deme Medan maye. Di vê bermayiya kevnare de kebrê mirên Medan cih digrin. Feqreqa 20km li bakûrê Mahabadê, li herêma şarwêran, li nêzî Gunde Indirqaşê di singa çiyakî de hatiye kolan. Di Feqreqa de çar stûnên kêvir bal dikişînin. Di hundirê Feqreqa de sê gor hatine çêkirin û Ii gor hin dîroknasan yek ji wan gora Ferwertişê padîşahê Meda ye. Feqreqa di singê çiyayekî da û tev jî kevir hatiye datiraşîn. Ew maleke ji kevir e û Ii ser çar stûnan hatiye durist kirin. Du ji wan stûnan li hundir û duyên din jî li aliyê derve hatine datiraşîn.

## Devera tûrîstîk

Bedewiya sirûşta herêma Mahabadê li Kurdistan û Îranê de nav daye. Li herema Mahabadê ji bilî deverên dirokî, newazeyên xwezayî jî bala gelek tûrîstan dikşine.

Deverên arkeolojîk, çiyayên derdora bajêr û taybetî Şikefta Sehûlan hersal bi hezaran tûrîst dike mêvan.

Şikefta Sehûlan di bin quntarê çiyayekî de jî hewzekî binê avê û şikeftekî mezin pêk tê. Di vê newazeya xweziye de avekî madenî heye. Ev şikefta mezin ku wek golekî binê erdê ye û gelek mezin e. Ava şikeftê ya şîfayî û dimenên wê yên balkêş dibe sedem ku gelek nexweş û meraqdar ji deverên dûr werin serdana Şikefta Sahûlan.

## Klîmên navdar



Aboriya bajarê Mahabadê bi giştî li ser bazirganî, çandinî. lawirvanî û çend kargehên biçûke. Kergehên Mahabadê zedetir li ser çêkirina qalîçe û kilîman e.

Hejmara van kargehan nêzî 50'an e. Di her kargehekî de di nava 50 heta 90 kesan dixebitin. Her sal di nav bajêr û herêmê de hejmara bêkaran zêdetir dibe. Li gundên derdora bajêr ji bilî cotyariyê, karê kilîmçêkeriyê û qaliçan heye. Lê ev kar zedetir jî di nav malbatan de tê kirin. Di sala 2008'an wê bi navê Mahabad Petrochemical Company bêşegehek ji bo hilberîna berên kîmyewî ji nefte were avakirin,

## Bazarî Mahabad

Navê sûka bajêr Bazarî Mahabad e. Sûk û meydanên Mahabadê di mehên havînê de hela derengê şevê ji alî niştecihên bajêr ve tên dagirkirin. Li sûka Mahabadê hin jî gelek pîşeyên otantîk têne kirin. Hesingerê sûka bajêr ji bo gundî û xwedî lazmatiyan tevr, tevşo, menteşe, balte, gîsin û alavên din çêdike. Dengê çakûç û agirê korika hesingerê Mahabadê di sûka bajêr de wek tabloyekî cuda ye.

Li bazarê belkî ji pîşeya herî zêde li ber çavane terzitiye. Mahabadi hin jî eil û bergen otantîk lixwedikin. Şal û şapikên ku ji destê terziyên Mahabadê derdikevin, li hemû Kurdistanê tên firotan.

Li sûka bajer di nav dikkanan de dîmena herî balkêş, qumaş in. Li Rojhilatê Kurdistanê wek şal û şapikên mêra, fîstan û kirasên jina jî balkêş e.

Qumaşên rengareng ku zêdetir ji bo kincên jinan tên bikaranîn wek tabloyên hunerî sûka Mahabadê dixemlînin. Sûka Mahabadê ku li navenda bajêr e, her roj bi dehhezaran kesî dike mêvan. Bazara Mahabadê heta derengjya evarê, di nav firoşkar û muşteriyan de dibetile û heta roja din, dergehên xwe digre. Mahabad bi navê Şehrekê Ferhengiyan, Cimhûrî, Gogtepe, Meydanî Heywanat û Meydanî Çiwarçira li taxan belavbûye. Mahabada rengîn, bişev wek helaleyekî ji ronahiyê li derûberên xwe dibiriqe. Şeven Mahabadê heta derengiyê didome.

## Meydana Çarçira

Meydana navdar Çarçira ye. Her sê qaziyên Kurdistanê di sala 1946an de şeva roja dawiya meha adarê li vê meydanê, li meydana ku 14 meh berê mizgîniya damezrandina komarê dabûn, hatin dardekirin.

Li bajar îstasyonek radyoyê û yek jî ya televîzyonê heye ku bi navê bajêr li wan hatine danîn. Kovara Mahabad û çend kovarên din jî niha li bajar tên weşandin. Ew weşan ji bilî Farsî, bi kurdî jî weşanên xwe dikin.

Li Mahabadê geşbûna weşanên nivîskî digîje dema Komara Kurdistenê. Di sala 1946'an de piştî ku çapxaneyekî Sowyetê gihişt Mahabadê, gelek rojname,kovar û pirtûk hatin weşandin. Rojnama Kurdistanê dest bi weşanê kir.





## Xebatên civakî

Li Mahabadê sînemayekî tenê heye û salona wê 600 kesî digre. Li bajêr serpêhatiya sinemayê digihêje dema Komara Kurdistanê. Hingê sînemayeke seyar li herêmê fîlmên welatparêziyê û şoreşa Sowyetê nîşandaye.

Li bajêr radyoyeke kurdî dest bi weşanê kiriye. Komên şanoyê di nav gel de lîstikên welatparêziyê lîstine. Bi taybetî şanoya Dayikî Niştîman deng vedaye.

Li aliye din li bajêr bi awayekî fermî encumana sînemayê hatiye damezrandin. Di vê koma sînemayê ya Mahabadê de bi deha xortên bajêr, fêrî teknîka sînemayê dibin û hersal gelek fîlmên biçuk û dokumantar tên kişandin.

Li Mahabadê 244 Mizgeft hene Çar aliyê bajêr bi mizgeftan xemilandî ye. Hejmara mizgeftên bajêr ji dibistanan zedetir e.

Li bajêr boksor, karetevan, futbolvan, voleybolvan, jîmnastîkvan bi giştî ji 1500 zedetir werzişvanê amator û profesonel henê.

Li Mahabadê di adara sala 1946'an de li bajêr Yekîtiya jinên Kurdistanê hatibû damezrandin. Ji bo keçan jîi dibistanekî hatibû vekirin.

Piştî rûxandina Komara Kurdistanê û vegera rejîma Şah de jî herçend li Mahabadê ji bo xebatên jinan hin komele hatibin vekirin jî, jin li heremê hertim di bin siyê de mane.

Li bajêr zankoyek bi navê; Zanîngeha Azad ya Îslamî heye. Di vê zanîngehê de bi sedan xortên Mahabadê û ji deverên din yên Kurdistan û Îranê jî gelek kes duxînin. Ji ber vê yekê li bajêr hijmara xortan zêde ye.

Di dema nûjen de cara yekem de wexta Komara Kurdistanê de ji bo biçûk û mezinan dibistan hatibûn vekirin. Hingê li Mahabadê 2 hezar xwendekar hebûn.

Ji mutbexa bajêr, kebaba Mahabadê navdar e. Ev xwarin bi goşte sor yên ajelên wek mêgan, pezê spi û reş tê çêkirin. Li hemû xwaringehên Mahabadê xwarîna sereke ev kebab e. Herwiha li kêleka kebabê dewê Mahabadê jî navdare ku JI mastê pez te çêkirin.

## Agirê bi pûş

Li Mahabadê herçend li ber objektîfên kamareyan aramî û ahengekî duxuyê jî, li bajêr agirê di bin pûş de disewite. Piştî rûxandina Komara Kurdistanê ber bi salên 1960 ku careke din li Kurdistanê pêla netewî destpêkirbû, Mahabad dîsa bûbû nawenda tevgera welatparêz.



Di dema Şoreşa Îslamî ya Îranê de, Mahabad jî tê de Kurdistan hatibû rizgarkirin. Piştî çend mehên azad, di îlona 1979'an de Mahabad û bajarên din ji alî Artêşa Xûmeynî ve hatibû dagirkirin û bajêr hat bombardimankirin.

Di sala 2005'an de xortekî kurd, bi navê Şiwanê Qedrî li Mahabadê ji alî leşkerên îranê ve hat kuştin. Ev buyer li Mahabadê bu sedemê serhildaneke mezin û li hemû bajarên Rojhilatê Kurdistanê belavbû. Di serhildanê de gelek kurdên sivîl hatin kuştin. Rejîma Îranê ji bo tefandina serhildanê 100.000 leşker şand Kurdistanê.

Di salên dawîn de xebatên siyasî yên partiyên kurd li Rojhilatê Kurdistanê û derdora Mahabadê dibe sedem ku di nav şervanên kurd û hêzên Îranê de pevçûnên xwînî derkeve. Serpehatiya Mahabadê wiha diyare ku wê heta xeletiyên dîrokê sererast bibin, bidome.

## Bajarê Ferînaz

Ferînaz Xusrewanî ya Mahabadî ku êdî sembola vî bajarî ye, bi berxwedana we ya cangorî diyar kir ku vîna vî bajarî heta rejima dagirker ji Kurdistanê bê qewirandin wê zindî be.

## Cejna Mukriyan

Şahiyên cejna Mukriyanê navdar e. Cejna biharê ya Mahabadiyan navdar e. Newroz û bihar ji bo gelê bajêr mêvanê herî bi rûmete. Dema roj li asîmanan tevî germa xwe silav dide Mahabadê û sermayê diqewirîne, Mahabadî ji malan dertên. Keviyên Rûbarê Mahabadê ji sehera sibê, heta derengiya evarê ji alî bajariyan ve tê dagirkirin. Keç û xort bi heyecana hevnaskirinê, pîr û kal bi hêviya hevditinê. zar û zarok bi coşa leyistinê, jin û bûk bi coşa dîlan û govendê berê xwe didin keviyên çem û li bin bayê govenda Mahabadê ya bi hêviyê re ku ji hezaran salan vir ve didome, hin jî xurt bûye.





## Firat Cewerî:

# Ez ne derman lê birî nê destnîşan dikim

**Kalê Badî**

Di demên dijwar ên, bi gotina wî 'xortik'iya xwe de dest bi helbesta kurdî dike û nivîsînê li pêş hemû helwestên pîroz û nepiroz dibîne û ji ber vê yekê bi şîfreyên helbestên xwe yên jiberkirî, bi qaçaxî direve diçe bihûşta nivîsê Swêdê. Helbest, çîrok û romanan diyarî kurdî dike weke civaknasekî wêjeyî û hê jî dinivîse û bê guman wê bivivîse jî.

Firat Cewerî ku yek ji navdartirîn nivîskarên kurd e û bi helbest çêrok û di deh salên dawî de jî bi romanên xwe erênî yan neyênî bala kurdan û cîhana wêyeyî dikêşîne ser xwe, dîsa ji bo karûbarên wêjeyî hate Amedê. Me jî derfet peyda kir ku pirsên di derbarê serpêhatiya wî û berhemên wî yên ku di nav demê de kom bûne jê bipirsin û li ser nîqaşên ku li ser wî têne kirin agahiyan rasterast ji wî bibihîzin. Cewerî bi dilgermî em pêşwazî kir û peyivî.

**Li Kurdistanê niha rewş guherî ye û gellek destkeftî hene. Wê demê dema ku min du rêz helbest dinivîsand, min ew weke tiryakê vedişart.**

**Di sala 1980'yî de tu çûyî Swêd. Beriya çûna te rewşa Kurdistanê çawa bû û çima Swêd ne welatekî din?**

Di sala 1978-79'an de, beriya ku ez derkebim, rewşa welêt ber bi xerabiyê ve diçû. Sazûmana leşkerî dest danîbû ser her tiştî. Dihate gotin ku ew ê Keman Evren karîna siyasî têxe destê xwe. Ji aliyê din ve, di navbera du rêxistinên kurd ên herî mezin PKK û KUK'ê de şer hebû. Wê demê ez ne xort lê xortikekî çalak ê pênûskar bûm. Wê hingê hemû rêxistinan dîktatoriya praleteryayê diparastin û bêguman em çepgirên Marksîst-Lenînîns bûn. Me digot em ê bi serkêşiya çîna karkeran bûrjûvaziyê têk bibin û şoreşê bikin. Lê belê bûrjûvaziya me jî tunebû. Ev rêbaz û raman ji alî min ve nedihatin ecibandin. Paşê min ji hevalên xwe re got: 'Baş e, em hewl didin ku dîktatoriya proleterya ava bikin û ez jî dinivisînim. Ger ku ez vê dîktatoriyê neecibînim û li dijê wê pirtûkekê binivisînim, gelo hun ê çi bikin?' Gotin; 'Wê çaxê tu dijîşoreşe yî' Paşê min got; 'Bi çi şêweyê dibe bila bibe, dîktatorî dîktatorî ye û min dev ji rêxistin, partîtî û siyasetê berda û dest bi wêjeyê kir. Lewre berovajiyê pir kesan, min ji destpêkê ve bi kurdî nivîsand. Lê belê ji bo nivîsandina kurdî qet derfet tunebûn. Loma min biryar da ku ez ji welêt derkebim. Û di meha Gulanê de beriya derba cûntayî ez derketim çûme Swêd.

Ger ku ez bême ser babeta çimahiya Swêd. Sedemê hilbijartina Swêd Mûsa Anter bû. Mûsa Anter ji Stenbolê vegeriyabû û li gundê xwe bi cih bûbû. Di 78'an de gava ku em xortik diçûne şêwir û propagandayê, me serdana Gundê Mûsa Anter jî dikir. Ji ber ku wê hingê zarokên wî li Swêdê bûn, Mûsa Anter ji me re qala Swêdê, demokrasiya wê û mafê kesayetiyê dikir. Carekê min jî jê re qala xwe kir û min got; 'Min dest bi nivîsîna kurdî kirî ye' Mûsa Anter'ê ku ji ber helbesta xwe ya bi kurdî ya bi navê 'Qimil'ê gellek tişt hatibûn serê wî, zanibû ku ger xortekî bi kurdî binivisîne wê çi bêne serê wî. Di van sohbetên me de wî her qala Swêdê dikir û dûre ez derketim çûme Swêdê. Piştî ez derketim, cûnta leşkerî derbe kir. Ji aliyekî ve ez kêfxweş bûm ku min xwe ji cûntayê rizgar kirî ye, lê belê ji alî din ve ez pir xemgîn bûm ku piraniya hevalên min ên nêzîk ji ber belavok belav kiribûn an jî sloganekî li dîwarekî nivîsandibûn hatin girtin û bi salan di zindanan de skence û azarên mezin kêşan. Lê sedema derketina min ji babetên siyasî bêtir, daxwaza pêkanîna derfetên nivîsandina kurdî bû û bi raya min ev sedem ji sedemên siyasî grîngtir bû.



**Di wê demê de rewşa kurdînûsiyê çawa bû, bayek wêjeyî yê kurdî li dar bû yan na?**

Mixabin na. Wê demê min pir dixwend û ji ber derfetan min bêtir nivîskar û helbestvanên çepgir ên wek; Pablo Neruda, Federico Garcia Lorca, Nazim Hikmet, Ahmed Arif û yên weke wan dixwendin. Min ji helbestê hez dikir. Beriya ku ez bibim komunîst, ji ber ku bavê min oldar bû min Qur'an û mewlûda Bateyî xwendibûn. Heta min mewlûdê jiber kiribû. Lê di wê demê de gava ku min pirtûkeke Cegerxwîn a bi tîpên latînî bi dest xist û xwend, baweriya min a nivîsandina kurdî geştir û xurttir bû. Lê mixabin ên ku bi kurdî dinivîsandin kêm bûn. Bi salan ez geriyam ku yekî bibînim da ku ez tiştekî xwe nîşan bidimê lê kes tunebû. Paşê em bi yên berî xwe hisiyan.

**Di warê nivîsandinê de Swêd, derfetên ku te hêvî dikirin da te?**

Piştî ez derketim min yekem pirtûka xwe ya bi navê 'Êrîş dikin' çap kiribû û ger ku em lîteratora dîroka wêjeya kurd a Bakur binirxînin, piştî pirtûka Mihemed Emîn Bozarslan a bi navê 'Meyro' û ya Rojen Barnas a bi navê 'Li bandeva Spêde' ev pirtûka min a seyemîn bû ku li bakur derketiye. Dema ku ez derketim min nikaribû helbestên xwe bi xwe re bibim. Di hin hevpeyvînên xwe de jî min gotiye; 'Ji bo ku ez dikaribim helbestên xwe bi qaçaxî ji sînor derbas bikim, min hemû helbestên xwe jiber kirin. Min tenê sernavên wan nivîsandin û di bin piziya xwe de veşart. Piştî gihîştim Swêdê, ez rûniştim û min ji nû ve helbestên xwe nivîsandin. Swêd pir derfetdar bû. Azadiyeke baş hebû. Li Kurdistan niha rewş guherî ye û gellek destkeftî hene. Wê demê dema ku min du rêz helbest dinivîsand, min ew weke tiryakê vedişart. Lê belê li Swêd ez dikaribûm biçûma kafetêryayekê rûniştima û binivîsanda û ev yek lukseke pir mezin bû.

**Te jî ji helbestê destpê kir û derbasî romanê bûyî. Gelo ji helbestê derbasbûna romanê kevneşopiyeke wêyekariyê ye?**

Hin helbestkarên ku bi helbestê destpê kirine û helbestkar mane hene. Hinên ku ji helbestê destpê kirine û di navberê de yek-du roman nivîsandine jî hene. Weke Nazim Hikmet. Hikmet roman jî nivîsandiye, lê belê tu kes wî wek romannûs nanase û nahesibîne. Dîsa Yaşar Kemal helbest jî nivîsandine, lê kes wî wek helbestkar nanase. Yên ku ji helbestê destpê kirine û derbasî çîrokê bûne hene. Min jî bi helbestê destpê kir, lê belê min tafilê dest bi pexşanê kir. Beriya çûna Swêdê ji ber ku li Kurdistanê derfetên nivîsandina berhemên berfireh û dirêj tune bûn û mirov dixwest bi kêm gotinan pir tiştan vebêje, min dest bi helbestê kir. Lê li Swêd, ji ber ku derfet hebûn. Min bala xwe dayê ku ez ji pexşanê hez dikim, dixwazim pir tiştan vebêjim, çêrokên min hene. Ji ber vê yekê di salên 80'an ên destpêka bi cih bûna Swêdê de ez derbasî çêrokê bûm û min çêrok nivîsandin. Dûre min dît her çiqas di çêrokê de azadiyek hebe jî çêrok bixwe jî bi sînor û teng tê ji min re. Loma ev 10 salên dawîne ku ez roman dinivîsim. Di romanên min de her çend karaktêr kêm bin jî, ji ber ku di romanê de derfetên bi rehetî tevgerînê zêde ne û ez xwe azadtir dibînim, ez roman dinivîsim. Ji ber vê yekê helbest û çîrok, ji bo romannûsiya min bûne weke pêlikan. Lê belê mebesta min ji vê ne ew e ku hunera helbestnûsî yan jî çêroknûsiyê hêsantir û bênirxtir e ji hunera romannûsiyê. Sedemeke din a vê yekê dibe ew be ku êdî ew şarezayiya helbestnûsiyê di min de nemabe.

**Te qala karaktêran kir, ez dixwazim vê bipirsim. Sedemê bertekên nehezkirina karaktêra 'Diyana' çi ye. Gelo kurd aşopî û rasteqîniyê ji hev venaqetînin an jî hemû civak wiha nin?**

Ez bawer dikim ku ev mesele wê dûre baştir bê têgihîştin. Ez nivîskarek im. Ji ber ku min xwe ji sansurê rizgar kirî ye, gava ku ez babet an jî karaktêrên xwe hildibijêrim, ez bi kesî naşêwirim û xwe otosansor nakim. Gava ez romanên xwe dinivisînim, dibe ku beşên erotîk tê hebin, lê ez helwesta malbat, xizm, terîqet, partî û desthilatan nafikirim. Ew ji bo romannûsiya min nabin asteng, lewre ez wêjekar im û temenê berhemên wêjeyî ji yê polîtîka, helwest û bertekên rojane pir dirêjtir e. Gava ku ez bûyer an babetekê hilbijêrim jî, heta ji min tê ez li çareseriya pirsgirêkê nagerim. Ez tenê destnîşan dikim û dibêjim; 'Va ye ev tişt heye' Bêguman 'Diyana' tune ye, çekirî ye. Lê yên ku ji min re gotin; 'Diyana hatibû gundê me' jî derketin. Diyana ser daye lê sir nedaye. Ew çend neheqî lê hatiye kirin lê wê berxwe daye. Di vir de ez tiştekî nîşan dikim: Li vî welatî di hundurê dewletê de JİTEM hebû. Gellek mirovên ku azarên Diyana kêşane hene û Diyana yek ji wan kesan e ku nebûye îtirafkir û ger ku bibûya îtirafker wiha nedibû. Pêşniyar lê dikin dibêjin; 'Biçe hevalên xwe jehr bike û ew bikuje, gefan lê dixwin lê ew navê partiyê jî nade. Dema ez karaktêrên xwe pêk tînim ji tu kesan, tu hesabî nakim û ez dixwazim karaktêrên min bibin navneteweyî jî. Bûyerên ku bi serê Diyana û Temo ve hatine, dibe ku li Amerîkaya Latîn an li Yewnanistanê jî bibe. Mûzîkjen çawa hest û ramanên xwe bi newayan bîne ziman, wênesaz bi wêneyan bîne ziman, nivîskar jî bi nivîsên xwe tîne ziman.

**Li ser te û Mehmet Uzun jî hin tişt têne gotin. Gelo tu dixwazî cihê wî dagirî?**

Ji salên 80'an ve min û Mehmet Uzun me hev dinasî. Dostê min bû. Di wêjeya kurdî de roleke wî ya mezin heye. Uzun hem dinivîsand û hem jî baş bazar dikir. Ez niha kêmasiya wê dikêşînim. Lê min beriya wî dest bi wêjekariyê kir û di nivîsandin û çapkirina romanên wî de keda min jî heye. Heta ku kurdî qedexe bû, min hez nedikir ku pirtûkên min li tirkî bêne wergerandin, lê piştî ku ew qedexe rabû, êdî bi dilrehetî ez dixwazim romanên min wergerin tirkî. Ger ku govar û rojnameyên tirkan, di weşanên xwe de cih bidine min an nivîskarekî din ê kurd ez ê pê kêfxweş bibim. Ger ku rexnegirên tirkî yên ku heta niha, weke serdestên xwe digotin ku zimanê kurdî tune ye, rabin di rojname û govarên xwe de li ser romaneke ku bi kurdî hatiye nivîsandin nirxandinan bikin ev tiştekî baş û sûdwer e. Ez ê pir kêfxweş bibim ku cihê Mehmet Uzun, Celadet Bedirxan an jî Ahmedê Xanî dagirim. Lê divê mirov bela xwe ji wan kesan bike ku dev dihavejin keda Mehmet Uzun û kesên din ên xizmeteke mezin li kurdî kirine. Wê ev bêne derbaskirin.

**Li ser xwe û TRT 6'ê tu yê çi bêjî?**

Nêzîkî 35 salan e ez ne endamê tu partî û rêxistinan im. Di nav kurdan de parastina serxweyiya kesayetî pir zehmet e. Di 90'an de dema min Nûdemê diweşand, hin yên ne PKK'yî digotin PKK ev govar fînanse dike. Min digot xwezî fînanse bike. Ger ku bikin ez ê navê wan bidim. Lê ji her raman û aliyan kes di govarê de hebûn. Wêje bi qalib û birdoziyeke teng nameşe. Ez diçûm kîjan televizyona kurdan, aliyên din digotin tu çima diçî. Gava ku TRT 6 vebû, ez bi kelecan li bendê bûm; 'Gelo ev kanal wê çiqasî bi zimanê kurdî û şexsiyeta kurdan bileyze û wê çiqasî me bipelçiqîne. Paşê min dît alfabeya Celadet a ku bi salan em ji bo wê têkoşiyan kar tîne û dikare ji bo kurdî gellek derfetan biafirîne. Piştî ku ez çûm û min bername çêkir jî tu kesî ji me re negot hun ê awa bikin wiha bikin. Ew tiştên ku min di hemû kanalên kurdan de aniye ziman, bi heman şêweyê di wê de jî tînim ziman. Îlle boykotkirin be, ser çavan; Bila mamostetiyê, parlamentoyê şaredariyan û temaşekirina hemû kanalên tirkan boykot bikin, ser seran ser çavan. Tu bi zarokên xwe TRT Çocuk'ê didî temaşekirin, beşdarî TRT Haber, CNN Türk û hemû kanalan dibî, lê belê dewlet li xwe mikûr hatiye û kanaleke bi kurdî damezirandiye tu yê ew boykot bikî. Hemû serok û rêveberên dezgehên kurd beşdarê kanalên dewletê dibin û ev kanal jî yek ji wan kanalên dewletê ye.



**Em kurd di warê raman û bîrdoziyê de wek hev nefikirin jî, di warê ziman û wêje û nirxên hevpar de divê em wek hev helbiwestin. Tu carî siyaset nebûye daxwaza min.**

**Gelo em dikarin bi vê şêweyê hatina te ya Amedê wek li hev hatinê binirxînin?**

Ez ji kesî naxeyidim. Ez zarokekî vî welatî me. Min 35 salên xwe ji bo vî zimanî û wêjeya wî bexşandiye. Ez tiştên rast bibînim ez ê bikim. Divê gelê kurd ve yekê zanibe ku min çi kiribe ez îmzeya xwe davêjim bin. Ez ji tiştekî xwe ne poşman im. Roman, helbest, gotar, hevpeyvîn, min çi kiribe ez berpirs im û îmzeya xwe davêjim. Loma jî heta niha min çi kiribe, min bi keda xwe kirî ye. Ez ne kurd bûma jî ez ê bi wêjeyê mijûl bibûma. Divê cudahî û pirrengî hebe ev dewlemendî ye û yekrengî şaşî ye. Di warê siyasetê de jî ramana min ev e. Xwezî benda hilbijartinê daketa û hem hukumet hem jî muxalefet koalîsyon bûna. Demokrasî ev e. Mirov dikare di hin babetan de wek hev bifikire. Wek nimûne; Em kurd di warê raman û bîrdoziyê de wek hev nefikirin jî, di warê ziman û wêje û nirxên hevpar de divê em wek hev helbiwestin. Tu carî siyaset nebûye daxwaza min û ji min re. Ji min re bêjin tu bibe serokê vî bajarî jî, ez ê qebûl nekim. Di navbera min û hêzên desthilat de her gav sînor heye. Lê min li dijî tu partî û rêxistin û kesan tu nivîsekê nenivisî ye. Ev ne karê min e, ez ji gengeşiyan hez nakim. Ez neferek ji gelê kurd im, bi kurdî dinivisînim û dixwazim berhemên wêjeyî biafirînim.

**Pêwendiyên Bakur û perçeyên din, bi taybet Başûr, di van salên dawî de geştir dibin. Di vê geşbûnê de rola wêjeyê çi ye û wê rola wê çawa bibe?**

Ev pirseke zor û bersiva wê dirêj e. Ji ber ku rewşenbîr û nivîskarên kurd bi zaravayên cihê û bi ser de jî bi alfabeyên cihê dinivisînin, di navbera wêjeya me de veqetînek çêdibe . Wêjeya Başûr li wir bi serê xwe bi pêş dikeve û ya Bakur li vir bi serê xwe bi pêş dikeve. Çawa dibe? Haya me bêtir ji wêjeya tirkî çê dibe. Eger ne ji hin weşanxaneyên dilsoz ku berhemên baş ên ji wêjeya Başûr werdigerînin li kurmancî, haya me ji tu geşedaneke wêjeyî ya Başûr nabe. Loma ez dibêjim, ne tenê Başûr, em dikarin di navbera Bakur û perçeyên din de jî pireke wêjeyî û kulturî ava bikin. Ew xebatên ku weşanxaneyên Bakur bi serê xwe dikin divê bi alikariya Rêveberiya Herêma Kurdistanê, Wezareta Rewşenbîrî mezintir bibin da ku em dikaribin berhemên Bakuriyan jî vergerînin soranî. Ev pire dikare tîna xwe li siyasetê jî bike.

**Hawarê çi ji me re hişt û wêjeya kurd çi li Hewarê zêde kir, piştî heware heta îro ew rewşa ku em tê da ne ?**

Hawarê di salên 30'an de destpê kir û heta 50-60 salan bandor kir. Lê haya tu kessî ji hewarê tûnebû. Di 80'an de dema min çêrok dinivîsandin, ji ber ku min Hawarê nedîtibû, min digot qey çêroknûsê pêşîn ez im. Di destpêka 80'an de min Hewar dît. Li Almanyayê, di destê Hemreş Reşo de Hawareke piçûk hebû. Dûvre, di 87'an de ez ketim dû şopa Hawarê. Ez çûme Şamê, Qamişlo û derên din û di dawî de min hemû hejmarên wê peyde kir. Hawar bi hawara me hat. Hawar pir pêşketî û gencîneyeke baş bû. Afrînerên Hawarê, hewl dabûn ku di hemû beşên wêjeyê de nimûneyan biafirînin û Hawar pireya di navbera wêjeya klasîk û ya modêrn de bû. Min bi saya Hawarê klasîkên kurdî gramera kurdî û taybetiyên zimanê kurdî nasîn. Ger Hawarê heta 15-20 salên din jî dom bikira ew ê tiştên pir hêja pêk bihatana. Lê ji ber ku tiştek tune bû û me nû dest pê kir Hewar ji me re bû çavkaniyeke mezin. Bi saya tîna Hawarê bû ku min hewl da ez govara Nûdemê derxim. Bêguman Celadet Bedirxan di nav zor û zehmetiyên dijwar de Hawarê derxist, lê derxistina Nûdemê jî pir hêsan nebû. Lê îro êdî em qala 400 romanên xwe dikin. Di dema Hawarê de du romanên me tune bûn. Lê ew demeke din û îro jî demeke din e. Lê dîsa jî ger ku kurdî bi derfetên statuyeke fermî neyê parastin û geşkirin û nebe zimanê dibistanan, bazarê û zimanê pere qezenckirinê, nabe zimanekî kêr hatî.

**Nûdem çima rawestiya ?**

Min bi armanca ku 5 salan derbixim di 92'an de dest bi weşandina Nûdemê kir. Gava kurdan dîtin ku min 5 salan ew bi serkeftî derxist bala xwe danê. Kurd neteweyeke wiha ye; Gava ku baweriya xwe bi mirov bînin, mirov şaşiyan bike jî ji dû mirov venaqetin. Ji ber vê yekê min biryara weşandina 5 salên din jî da. Piştî 10 salan, min bala xwe dayê her ku diçe ez diwestim û êdî ez ne govarger û weşanger, ez nivîskar bûm. Ji ber van sedeman ji bê çarî, piştî 10 salan min weşana wê rawestand.

# Armeniyê no welatî



Nadire Güntaş Aldatmaz



Zemanê no welat de yew şarode bîn bî sey şaranê bînanê vîndîbîyayeyan. Zemanê ke va no zeman sey yê sanikan zemano vîndîbîyaye nîyo. Se serrî ra avêr o. Se serrî ra avêr no welat de şaro armenî bî. Tarîx belî yo, nufusê o wextî belî yo. Çend kes kotî de bîyo pêro belî yo. Çi guneyo ke ewro Tirkîya de humara merdeyan ser o munaqeşe beno. Tayê vanê mîlyon û nêm kes ameyo kiştene yan kî tehcîr kerdo, taye vanê tena mîlyonê yo, tayê bînî vanê nê, mîlyonê ra senik o. No munaqeşe de wijdan ca verdîyo. Ne dejê ê şarî ne kî yê tornanê înan umurê kesî de nîyo.

Çîyode zaf eşkera esto ke no welat de armenî nêmendê. Se serrî ra avêr nufusê xirîstîyanan (armenî, suryanî, rumî) hama hama nêzdîyê nêmeyê şarê welatî bîyo. Nika cayan de tek tek mendê. Ê kî ya asîmîle bîyê, ya xo nimnenê yan kî yenê kiştene.

Çimo ke kor nîyo, goşo ke ker (giran) nîyo ganî bivîno, ganî biheşno ke no welat de se bîyo. Bi înkar, bi çimgirewtene, bi goşgirewtene problemî nêqedîyenê. Bi no tore derd û kulê zereyê kesî weş nêbeno, dejê kesî nêvêreno ra. Ganî şarê no welatî bi çimanê zerrîya xo qayt kero. Vengê xo berz kero, vajo: "Ma dî, armenîyê ma, cîranê ma kiştî. Mal û milkê înan dest ra girewt." Key ke şarê no welatî cîrananê xo yê verênan rê wayîr vejîya o wext dejî vîra şonê. Dewlete kî se vana wa vajero. Vatişê dewlete dej nêdano be merdimî sey yê şarî. Çike dewletî menfaatê yew zumre seveknenê. Çike dewletî goreyê menfaatê a zumre qisey kenê. Çike dewletan de wijdan çin o. Key ke şarê Tirkîya cîrananê xo rê wayîr vejîya ez bawera ke dejê zereyê înan kî qedîno. La Tirkîya de şarode winasî esto ke? Eke esto kî ma hîna nêdîyo. Şarê Tirkîya cîrananê xo rê nê, dewleta xo rê wayîr vejîno. Zulm hende eşkera yo, her kes kerdene ra xeberdar o la ancî kî kesî ra veng nêvejîno. Tezê dewlete ci rê weş yeno. Labelê vanê înan kî nêzan çikê ma kîşt û bi no tore kerdena dewlete meşru vînenê. Yan kî pêçika heme şarî no suc de esta coka kesî ra veng nêvejîno. Coka tezanê dewlete rê wayîr vejînê.

Kitaban de nênusîya yo, mekteban de qet qalê ci nêbeno la hîkayeyanê pî-kalikanê ma de tim vajîno ke armenîyê no welatî qir kerdê, surgin kerdê, remê yan kî rayan de, koyan de merdê. Peynîye de kes nêmendo. Yew meseleya ke mêrikêde dêrsimijî (Merdim Pilemurîye ra bî.) qisey kerde nîya bîye: "Apê mi qisey kerdêne vatêne serra 1913 de armenîyê ke dewa ma der ê kî amey kiştene. Pêro kişîyayî, bînê cendegan ra yew doman wişt ra berma, hetê ma ser ame. Lajê apê mi xirxade girse (kemere) girewte xo dest ke pirodo, lajekî bikişo mi nêverda, mi va guna yo, hîna qijo. O sire de maya lajekî (hîna nêmerdîbî, dirbetine bîye) sereyê xo dard we, va 'kirmancenê, kirmancenê a ke ameya sereyê ma ser de, bêro seryê şima ser de kî!' Cinika armenîye winî zerrî ra waştîbî ke 38 de kî ameye sereyê ma ser. O wext kî esker ameyo, dewijî dayê be arê, destê hemîne pê layî yewbinî ra girê dayo. Wexto ke destî girê dayê eskeran ra yewî bazîyê pîyê mi qurçî kerdo û la kî tenê sist girê dayo. Pîyê mi be lajê apî ra têleye de bîyê. Pîyê mi lajê apê xo ra vato 'Eskerî destê mi sist girê da, bazîyê mi kî qurç kerd, belkî vano biremê. Bê ma biremîme.' Key ke makînelî na ro û ez be lajê apê mi ra ma pîya xelesîyayme ra, remayme. Ma dima tifangî eştî la ma ro nêginay. Ma bi rojan koyan ra fetelîyayme û bi no tore xelesîyayme."

Meseleyade bîne kî par nê pêrarî dewa ma de vêrena ra. Di merdimê dêrsimijî şonê dewa ma. Şarê dewe de suhbet kenê. Mîyanê suhbetî de çitur ke mewzu beno ra merdiman ra yew vano "Ez kî armenî ya." Kêna apê pîyê mi vana "Haşa birayê mi, ti çayê xo ra winî vana!".

Ez nika fikrîyena, Dêrsim de ke nîya bîyo û hîna kî şarê Dêrsimî armenîyenî sey milqî (nengî) vîneno êdî şima cayanê bînan bihesabnê.

Ez no dejo se serrên zerrîya xo de hîs kena, dejê şarê armenî sey dejê xo vînena û reyna înan rê sebir û tehamul wazena. No şerm ma rê bes o.

# Vera zordestiya îqtîdarî de azadiya kameraya Panahî

Zelal Mevlutoglu

Fîlmê Cafer Panahî "Taksî" yo ke Xelata Heşa Zerrênî (Festîvala Fîlman yê Berlînî ya 65.) girewta, çarçewaya Festîvalê 26. yê Fîlmanê Mîyanneteweyî yê Anqara de vejîya vernîya temaşekerdoxan. Fîlm de hesgêrîya sînema ra heta cizayan, qedexeyan ra heta ehlak zaf meseleyan ser o qisey beno.

Rejîsor (Cafer Panahî) hetê Dewleta Îranî ra 20 serre cizaya fîlm nêantene girewtîbî. Labelê Panahî sey Sîsîfosî vera heme zordestîye de rayîra xo rê dewam keno û binê ciza de fina fîlmê xo anceno. No fîlm yew taksî de ravêreno. Kamera, taksî ra qet nêvejîyena teber. Dîreksîyonê taksî de zî Panahî bixo ronîşto û taksî rameno. Raywanîyê ke nişenê re taksî ge mîyanê xo de ge zî Panahî reyra qisey kenê. No qiseykerdiş, hem heqa heyatê Îranî de fikr dano ma hem zî sînema ser o ma dano fikrîyayene.

Temamê fîlmî de îqtîdarê Îranî û problemê sosyalî krîtîk benê. Cafer Panahî zî fîlm de bi kaykerdîşê xo, xo rasterast aksê fîlmî keno. Qandê cû ma eşkenê na rewşe çarçewaya nuşteyê modernî de pê nosyonanê self reflexîve û abstractîonî îzah bikerê. Nosyonê "self reflexîve"î de "self" rejîsorî ifade keno,"reflexîve" zî tecrube û hîssîyatê rejîsorî, ê ke aksê fîlmî bîyê îfade keno. Panahî zî fîlm de hem ewnîyeno sînema hem zî ewnîyeno xo. Sewbîna, hetê Umutî ra nimitkî rotena DVDyanê korsanan, hetê yew wendekarê sînema ra qandê fîlmê xo gêrîyayîşê yew hîkâye û qandê dersa warezaya xo timûtim sînema ser o qiseykerdîşê Panahî zî nosyonê "self reflexîve" mojneno ma. Nosyonê abstractîonî de zî rejîsor yew kesî ra yan zî yew hadîse ra vecîyeno rayîr û mesela heme însanan ano re ziwan. Fîlm de bi mojnayena heyatê Îranî zî nosyonê abstractîoni ca gêno.

Raywanan ra yewe zî avûkata Panahî vejîyena. Labelê Panahî wexto ke avûkata xo gêno taksî, yew veng eşnaweno. Panahî ê vengî ra terseno. Goreyê Panahî wayîrê ê vengî polîso ke wextê îfadegirewtişî de ey ra persî pers kerdê, o yo. Avûkate zî Panahî rê vana, "Ê xora wazenê ke ma wîna bifikrîyê "ma timûtim hetê îqtîdarî ra taqîb benê". Nê qiseyê avûkate nosyonanê panaptîkonî, sînoptîkonî û super panaptîkonî anê vîra merdimî.

Jeremy Bentham, serra 1791 de planê yew hepisxaneyî hedre keno. Plan de Bentham, orteyê hepisxaneyî de "kuleya ewnîyayîşî" awan keno û çorşmeyê ci de zî cayê hepisan




virajeno. Çorşmeyê kule zî winî têrapîşeno ke kes nêeşkeno bizano gelo zere de kes esto yan zî çin o. Qandê cû mehkumî, zere de kes bibo yan zî nêbo, winî zanenê ke îdarekerdoxê hepisxaneyî kule ra tim qaytê înan kenê. Foucault zî modelê Benthamî ra vejîyeno rayîr û nosyonê panaptîkonî ano rojeve. Panoptîkon de merdim vano qey ez tim teqîb bena, qandê cû têwgêrayîşê xo, xo bi xo keno raşt.

Bi averşîyayîşê teknolojî na fin zî nosyonê superpanoptîkonî û sînoptîkonî yenê rojeve. Superpanoptîkon de zî teknolojî dekewno dewre. Kamerayê ke heme kuçeyan de ronîya yê ra heta telefonan, navîgasyon ra heta medyaya sosyale, îqtîdar heme ca de hemwelatîyan dima yo. Îqtîdar hinî vila beno heme ca. Sînoptîkon de zî hinî îqtîdar nêewnîyeno hemwelatîyan, na fin zî hemwelatîyan bi zerrîya xo fikrê îqtîdarî teqîb kenê û goreyê nê fikran hereketanê xo kenê raşt.

Fîlm de zî ma fehm kenî ke Cafer Panahî vano, qey îqtîdar timûtim mi teqîb keno. Avûkata Panahî zî bi qiseyanê xo na rewşe wina kena zelal; "Keso ke teber der o kî hepixane der o. La teber hapîsxaneyode hîna vêşî gird o." Labelê kameraya Panahî vera zordestîya îqtîdarî de, bi sere wedaritene, azadîya xo eşkera kena û verê îqtîdarî de milê xo çewt nêkena.



## Murat Çiçek:

# Folklor bingeyê edebîyatî yo

Murad Aygun



Murad Çîçek 1985 de Gimgim de ameyo dinya. Hetanî lîse Gimgim de wendo. 2005-2009 de Unîversîteya Gîresunî de beşê edebîyatî wendo. 2009 ra hetanî 2013 Gimgim de mamostayîye kerda. 2013 de Unîversîteya Artûklû ya Mêrdînî de kirmanckî ser o mastero bêtez qedêna. Eynî serre dest bi masterê bitezî kerd û gulana 2014î de qedêna. Rojnameyê Newepelî û keyepelê Zazakî.Netî de bi nameyê Murad Murxan tayê şîîr û estanikê ey weşanîyayê. Emser Weşanxaneyê Vateyî ra bi nameyê Mêşa Dengize (Estanikanê Gimgimî ra), yew kitabê ey weşanîya.

Roportajo ke mi seba rojnameyê ma Newepelî kerdo, ez tîya pêşkêş kena. (Murad Aygun)

* * *

**Kitabê to yew xebata folklorîk a. To estanikî arêkerdê. Arêkerdişê estanikan de zehmetî çi ya?**

Merheba, mi arêkerdiş de zaf kî zehmetî nêante. Çuke xora mi usulê arêkerdişî zanêne. Mi lîsansê xo beşê edebîyatî ser o wendbî. Dima kî ez usul û qaydeyanê ziwanê ma musaya û mi bi teşvîqê mamostayanê ma dest pêkerd estanikî arêkerdî. Feqet arêkerdişî dima merdim ke nuseno tayê zehmetî anceno. Xora înanê ke no kar kerdo, çetinîya nê karî kotî der a, zanê.

**Edebîyat de muhîmîya folklorî çi ya?**

Folklor bingeyê edebîyatî yo. Ma wina bihesebnîme; eke ziwan, kultur û milet yew bîna bo, folklor kî bingeyê (temelê) a bîna yo. Şima kî zanê ke yew bîna bêbinge bîna, yew keye kî keye nêbeno.

Çîyo folklorîk de îdyomî, vateyê verênan ûsn. çîyî sey xo, orjînal derbaz benê. O semed ra kî edebîyat de cayê folklorî muhîm o.



Estanikê ke to arêkerdê, hîna zaf hetê maya to ra ameyê vatiş, to nê estanikî çi wext goşdaritî? Ti zî zanî êdî kes estanîkan nêvano, xora kes êdî nêgoştareno zî.

Raşt a. Mêşa Dengize de 19 estanikî estê û nînan ra 16 hebî maya mi mi rê qisey kerdê. Hona ke mi nê estanikî arênêkerdibî ez hîrê dewan ra ewnîyaya û mi seba estanikan zaf kesan ra pers kerd. Feqet her kesî va kalikê to baş zanêne û ey ra kî maya to ogitê xo girewto. Xora ez kî hêşyarê maya xo bîya. Labelê mi waşt ke ez teber ra dest pêkerî. Dima ez ancîya ageyraya maya xo. Mi nê estanikî 2013 de menga hezîrane û menga êlule de maya xo ra goşdaritî û qeyd kerdî.

Goşdaritena estanikan bîya kemî labelê ez bawer a ke ma nê estanikan bi resman bixemilnîme domanî anciya nê estanikan wanenê û goşdarenê.

**To tena estanikî arêkerdî, sewbîna çîyî zî arêkerdî?**

Nê, destê mi de sewbîna kî estanik û çîyê folklorîk estê.

**Goreyê zanayîşê mi, dewa to Goşkar hetê têkilîya teknolojî ra, bajaran ra û sewbîna çîyan ra dûrî ya. Awantajê nê çîyî hetê asîmîlasyonî ra çi yo? Ez wazena ti dewa xo bidî şinasnayîş?**

E, ti raşt vanî. Dewa ma gelîye de, mîyanê koyan der a. Gimgim ra zaf dûrî nîya feqet zimistan dewa ma de giran derbaz beno. Verî xora televîzyon, radyo ûsn. çî kî çin bî. O semed ra miletê dewe şewanê dergan de ameyo têhet. Meseleyî, estanikî, destanî ûsn. çîyî qisey kerdê. Halê dewa Goşkarî wina yo. Labelê nê serranê peyênan de teknoloji seke şî serê gilê koyî ame dewa Goşkarî kî.

**Ti wendekarê Zanîngeha Artûklûyî, eleqeyê to yê nuştiş û wendişê kirmanckî wendekarîye ra dima dest pêkerd yan ti verî zî eleqedar bîyênî? Seba Zanîngeha Artûklûyî cadayîşê kirmanckî, ti wazenî çi vajî?**

Ez wina vajî. Eleqeyê min û wendişê kirmanckî 2012 de dest pêkerd. Heto bîn ra eleqeyê min û nuştişê kimanckî, wendekarênî ra dima 2013 de dest pêkerd.

Unîversîteya Artûklûyî seba kirmanckî yew avantajêde gird a. Ma kî ganî nê avantajî veng nêverdîme. Feqet no bes nîyo. Goreyê mi, ganî şaxê mayzanistê zazakî saz bibo. Tayê unîversîteyan seba lîsansî kî wendekarî girewtê feqet Artûklû hona nêgirewtê. Ez îta ra eşkera kena ke na kemasîyêde gird a. Reyna ez hêvî kena ke Unîversîteya Artûklûyî nê beşî kenê ra.

**To estanikî sey vatişî nuştê la tayê zî bibo to mudexele kerdo?**

Seke maya mi vatî, mi winî nuştî. Çunke ma wina terbîye dî.

**Kitabê to fekê dewa to dano şinasnayîş. Mi gore hetê çekuyan, telafuz û şuxulnayîşê gramerî ra çîyêko zaf muhîm o, dewlemendîya ziwanî veceno meydan. Ti nê çîyan ser o çi fikirîyenî û eke standardîzekerdişê ziwanî bigîrê çimî ver, to gore standardîzekerdişê ziwanî çîyêko baş o?**

Ma mudaxaleyê metnanê folklorîkan nêkenîme. O semed ra kî metnê folklorîkî sey eslê xo yê. Derheqê a mintiqa de çi ke esto înan bi şeklêde pak neql keno.

Standardîzekerdişê ziwanî muhîm o, lazim o kî. Çunke ma ewro bi qiseykerdene yewbînan îdare kenîme labelê meşte-bîro ke bi ziwanê ma perwerde ame dayîş, o wext merdim ere ziwanêde standard geyreno. Standardîzekerdişê ziwanî çîyêde pozîtîf o.

Mi gore, standardîzekerdişê kirmanckî ganî her mintiqa ra bo, yew mintiqa ra nê. Xora qaso ke ma zanîme ziwanzanê ma kî wina kenê.

**Wexto ke ti kitabê xo ser o bifikirîyî ti wazenî ma ra çi vacî?**

Mêşa Dengize de estanikê başî estê. Ez bawer a ke her kirmanc nê estanikan de mintiqaya xo ra parçeyêk vîneno.

**Goreyê zanayîşê mi ra, ti şîîran zî nusenî, xebata to ya şîîran qasê kitabêk esta? Yan zî sewbîna xebatê to estê?**

Tayê şîîrê mi estê. Ez şîîran ra eleqedar a. Ey ra teber kî "têvereştişê" ma estê. Min û Hemîd Hozanî bi şîîran eşto têver. Ma nika înan ser o xebetînîme û ez hêvî kena ke demêde kilm de ma înan sey kitabî çap kenîme.

Nînan ra teber kî sey hîkayeyan xebatêda mi esta.

**Goreyê to, şîîre çi ya?**

Mamosta Malmîsanij yew şîîra xo de vano: "Zanî ke ez fek akera, kilî mi fek ra perrenî". Mi gore, manaya şîîre tam kî na ya. Ez ke kelecan bena çekuyî mi fek ra ginenê war o û rêz benê.

**To gore seba averşîyayîşê edebîyatê kirmanckî çi lazim o?**

Ez bawer a ke êdî edebîyatê kirmanckî de îhtîyacîya rexneger û rayîrberan esta. Çunke edebîyatê ma gelêk rayîr şîyo û nê rayîrî rê kî rayîrberî lazim ê.*

*No roportaj "Newepel, Rojnameyê kulturî, Hûmare 64, Dîyarbekir, Hezîrane 2014, r. 4" de weşanîyayo.

# Rastiya bûyerên Mahabadê û stratejiya Îranê

**Mamend Roje**

Di derbarê bûyera xwekuştina keça kurd Ferînaz Xusrewanî de parêzerê dosyeyê Hejar Ebasî ragihand ku gumanbarê bûyerê karmendê dewletê ye û divê dewlet dest ji reşkirina delîlan berde û rê veke ku ev doz bi dadî bi encam bibe. Ebasî her wiha belavkirina vîdeoyên Xusrewanî ku tê gotin ne yên roja bûyerê ne jî şermezar kir û got: “Bi belavkirina van dîmenan birîna malbata Ferînaz dijwartir kirine”

Li Rojhilatê kurdistanê piştî bûyera xwekuştina Ferînaz Xusrewanî û çalakiyên piştî wê alozî dom dike. Her wiha agahiyên balkêş derdikebin holê. Parêzerê dosya Xusrewanî Hejar Ebasî ragihand ku gumanbarê bûyerê ku hatibû destgîrkirin li xwe mikûr hatiye ku ew bûye sedem ku Ferînaz Xusrewanî xwe bikuje. Ebasî her wiha ragihand ku gumanbar karmendê dewletê ye. Abasî bi van daxuyaniyên xwe her wiha rayedarên dewleta Îranê ku digotin gumanbar ne karmendê dewletê ye jî derew derdixe. Weke tê zanîn Cîgirê Waliyê Urmiye û Waliyê Mahabadê piştî ku bûyer qewimî û xwepêşandan destpê kirin ragihandibûn ku gumanbar hatiye destgîrkirin lê belê gumanbar ne karmendê dewletê ye. Ebasî di daxuyaniya xwe ya ku daye ajansa Mehirê de her wiha diyar dike ku doza Ferînaz Xusrewanî hem ji aliyê siyasî û hem jî ji aliyê hiqûqî ve dozeke pir grîng e û ji ber ku piştî vê dozê bûyerên mezin rû dane ev doz bûye mijareke asayîşî jî.



**Di rojên dawiyê de, du alî bi nîvefermî berpirsyatiya vê çalakiyê girtine ser xwe. Komek nehênî ya bi navê ‘Parêzerên Rojhilatê Kurdisatanê’ ragihandiye ku ev çalakî ji alî wan ve bi mebesta tolhildana bûyerên Mehabadê de wiya encam dane.**

### Kî vîdeoyên bûyerê belav dike?

Piştî ku hin vîdeoyên ku tê gotin ên Ferînaz Xusrewanî ne bi ser tora înternetê hatin belavkirin, bi mebesta ku bi ser vîdeoyan dixwaze xwe paqij derxîne i alî malbata Ferînaz Xusrewanî de di 13’ê Gulanê de di derbarê xwediyê Otêl Tarayê Nadir Mewlûdî de jî doz hate vekirin. Lê xwiyê Otêl Tarayê vê tuhmetê red dike û bi riya parêzerê xwe radigihîne ku xwepêşandarên ku otêlê ew vîdeoyan desteser kirine û belav kirine. Parêzerê malbata Ferînaz Xusrewanî Hejar Ebasî da zanîn ku weşandina vîdeoyên bûyerê, piştî çalakiyên li Mehabadê, birînên qurbanî û malbata Xusrewanî nakewînin û belkî xirabtir jî dikin. Ebasî got: “Niha ev pirsiyar heta vê gavê jî bê bersiv dimîne ‘ka gelo kî, ji bo çi vîdeoyên bûyerê di torên civakî de diweşîne? Em wek dazdar li pey wê yekê ne ku bizanibin kî û kîjan alî li pişt belavkirina vîdeoyan in. Em dixwazin bizanibin gelo ji bo çi meremê dixwazin bi îtîbara Ferînazê bilîzin” Ebasî dide zanîn ku ev kiryar ne karê kesên normal û hemwelatiyên asayî ne, dibe ku hin kesên ku di warê teknîk û kamêrayan de pispor in li pişt vê yekê hebin. Her çiqas xwediyê Otêl Tarayê Nadir Mewlûdî bêje ku ev vîdeo ji aliyê xwenîşandêran ve hatiye belavkirin jî, malbata Ferînaz û parêzerê wan, wê yekê red dikin û diyiar dikin di vê bûyerê de lîstikek deqewime.

### ‘Xetera wendakirina belgeyan heye’

Hejar Ebasî di derbarê vê bûyera belavkirina vîdeoyan û belgeyên vê dozê de axaftina xwe wiha dom dike: “Ji ber ku hin kesên ku dixwazin belgeyên vê bûyerê ji holê rakin, ez nikarim xwe bigihînim hûrguliyên vê dozê da ku derxim holê. Dosye di warê hiquqî de di qonaxa lêpirsînên destpêkê de ye, hê li beşa lêkolînên dadgeha Mehabadê ye û ez bi xwe ji vê yekê agahdarim ku tu pirsgirêk tune ne. Lê ji ber ku ev dosye nehêniye û di qonaxa lêkolînan de ye, nabe ku tu kes li ser naveroka vê bipeyive. Jixwe ev ne qanûnî ye jî.”

Ebasî diyar dike ku ew û malbata Xusrewanî li pey bidestxistina giştî mafên ji destçûyî yên qurbanî û malbata wê ne û bi ti awayî ji heqên wê derbaz nabin û heya dawiyê li pey wê diçin. Li ser tawanbar jî dibêje “gumanbarê li xwe mikûr hatiye karmendê dewletê ye, lê heta niha em nizanin ka gelo girêdayî dezgehên ewlehiyê ye an na” herwiha li ser pêvajoya dadgehiyê jî dide zanîn ku wê pêvajoya dozê herî zêde mehek bajo û dibêje “Li hemû dinyayê naveroka dosyeyên kuştinkariyê veşartî ne û mafê tu kesan tuneye ku tiştên girêdayî vê dozê veşêre yan jî tune bike”

Çavdêr li ser belavkirina vîdeoyan, dezgehên ewlehiyê wek navnîşan destnîşan dikin û didine zanîn ku dezgehên ewlehiyê di nav hewldanê de ne ku rûyê xwe sipî nîşan bidin. Diyar dikin ku armanca wan ew e ku vê bûyerê wek bûyereke taybet û adlî bidin nîşandan û têkiliya wê û dezgehên fermî tune ye. Lê hemû belge wê rastiyê derdixin ku weşandina vîdeoyan karê wan e û tu kes nikare bi vî rengî wan vîdeoyan biweşîne. Bi vî awayî birînên qurbanyan dijwartir dikin û bi awayekî sîstematîk bi kerameta wê bilîzin û cardin jî wê bikujin.

Li hember daxuyanî û kiryarên dewletê û dezgehên wê çalakan radigihînin ku alozî heta niha jî berdewam e. Roja pêncşema borî, komek ji çalakgerên siyasî û sivîl bangewaziyek weşandin û daxwaz kirin ku ji bo protestokirina siyaseta zext û fişarê ya dezgehên ewlehiyê, bila gel bazar boykot bikin û dergehên dukan û kargehên xwe venekin. Li hember vê yekê Waliyê Mahabadê Cafer Ketanî got: “Hemwelatî hişiyarin û tu kes guh bi banga medyaya dijmin nake”

Hin çavkaniyên nêzîkî opozîsyona kurd radigihînin ku li bajarên Sine, Mahabad, Merîwan, Bane, Pîranşar, Şino û Bokanê beşeke mezin ji gelê van bajaran dukan û bazarên xwe girtine û ji malê xwe dernektin e. Ji aliyê din ve jî rayedarên fermî wê agahiyê red dikin. Herwiha ji bilî hejmara girtiyan, zêdetir ji 30 kesî jî birîndar hene ku piraniya wan hê jî li nexweşxaneyan in û rewşa hin ji wan jî xeter e. Akam Ellac’ê ku di bûyerên pêncşema çûyî de li Mehabadê, ji aliyêm hêzên ewlehiyê ve hatibû birîndarkirin, di komayê da û pijîşk didine zanîn ku hê jî xeteriya jiyana wî dom dike. Akam Ellac ji aliyê endamên tîmên taybet ve hatibû birîndar kirin û niha li nexweşxanya Îmam a Urmiye yê di bin çavdêriya gardyanan de tê dermankirin.

### Çalakiyên serbazî destpê dibe

Li gor nûçeyên çavkaiyên kurd, yekşema borî, hêzek çekdarî ên nenas êrîş dikin ser qereqola gundê Sbetlû ku girêdayî bajarê Baneyê ku 3 kîlometran ji wê bajarê dûre. Di encama vê êrşê de, serbazek kurd bi navê “Bextiyar Xecîcî” jiyana xwe ji dest dide. Çavkanî dibêjin ev bûyer di demek de diqewime ku piraniya bajarên Rojhilatê Kurdisanê di doxeke ewlehiyê ya giran de bûye û hêzên taybet derûdora bajaran girtine.

Di rojên dawiyê de, du alî bi nîvefermî berpirsyatiya vê çalakiyê girtine ser xwe. Komek nehênî ya bi navê ‘Parêzerên Rojhilatê Kurdisatanê’ ragihandiye ku ev çalakî ji alî wan ve bi mebesta tolhildana bûyerên Mehabadê de wiya encam dane. Lê hin çavkanî jî destê xwe ji PJAKê dirêj dikin û didin zanîn ku ev çalakî karê HRK baskê serbaziyê PJAKê ye. Heta niha ti aliyekî fermiya hikumetê li ser vê bûyerê daxûyanî nedaye, lê xûya dike ku bûyerên Mehabdaê dê bidomin.



# Berxwedana Araradê û Biroyê Heskê Têlî



**Mehmet Gültekin**

Berxwedana Araradê di dîroka kurdan de wek tevgera herî bi hêz û demdirêjtir ya di nîvê yekem ya sedsala 20’an li bakûrê Kurdistanê cihê xwe girt. Sedema vê ya sereke ew bû ku rêvebiriya siyasî ya vê tevgerê ji aliyê rêxistinek wek Xoybûnê dihat meşandin ya ku wê demê ji hevgirtina hemû saziyên kurdî pêkhatibû. Berxwedana Agirî di rastiyê de hin sal û nîvek beriya damezrandina Xoybûnê bi serokatiya Biro Hesikê Têlî ê ku ji aliyê Îhsan Nurî Paşa de wek meşaleya şoreşa Agirî hatibû bi navkirin destpêkiribû.

Biro di nivîsên bi dewletê re wek Hesikîzade Îbrahim Axa, bi nîşana Xoybûnê Îbrahîm Paşa Hesikîzade û di nav gel de jî bi navê Biro Hesikê Têlî an jî Îbrahîm Axa dihat destnîşan kirin û yek ji serokê eşîra Celaliyan bû ya ku li derdorê Araradê, li Serhad, Mako û Kafkasya Başûr cîhwar e.

Eşîra Celalî di sedsala 7’an de dema artêşa îslamî Îraq dagir kir li başûrê Kürdistanê li herêma Şehrêzor dima û piştre koçberî herêma Ararate bûye. Çavkaniyên kurd, osmanî û yên roavayî ji sedsala 19’an Celaliyan li ser sê binemalan Bilixkan/Hesesori, Sakan û Xelikan parvedikin û nifûsa wan ya wê demê jî qala navbera 3 heta 5 hezar malbatan dikin.

Îbrahim Axa ji malbata Hesesoran bû, maleke wî di nav bajarê Bazîdê û yek jî li gundê Çiftlik a li qûntarê çiyayê Agirî hebû û di mehên bihar-havînê de jî li warkozên Elê derdiket zozanê. Malbata wî di bavê 6’an de digihêje Mehmûd Pêv-Killê, navê diya wî Mirdîsî, yê bavê wî Hesik û kalikê wî jî Bişo bû. Bi navên Eyûb Axa, Ehmed Axa, Eli, Amo, Metê û Sêvik bira û xwîşkên wî û bi navên Dawûd, Emer, Yemlîxan, Sezdîn, Hesen, Evdilleh, Qûlîxan, Memed, Tacdin û Mexbûle jî zarokên wî hebûn.

Îbrahî Axa hin beriya serhildana Araradê ji ber berxwedana wî ya tev Gur Heso li dijî artêşa rûsan dema şerê cîhanê ê pêşîn yên ku hewl didan herêmê dagir bikin navdar bûbû. Ew piştre bi piranî li mala xwe ya li bajêr dima û bi bazirganiyê ve mijûl dibû. Dema dewletê piştî têkçûna serhildana Şêx Sêîd di rojeke bihara 1926’an xwest Îbrahîm Axa jî sirgûn bike, wî xwe gihand çiayayên Araradê û dest bi berxwedanê kir.

Li gor çavkaniyên dewletê yên di nivîsên serbazê tirk Reşat Hallı, roja destpêka berxwedanê wek 16 gulana 1926’an tê destnîşan kirin. Di vê rojê û rojtira din de, piştî ku Îbrahim Axa li Mixtepe baregeheke şervaniyê sazkiribû, şerê pêşîn ê di navbera kurdan û leskerên tirkan de derketibû. Dora 50 şerkaran zora artêşa tirk biribû û gelek çek û silehên wê ketibûn destê serhildêran.

Di salên 1926 û 1927’an de gelek şer qewimîn û hêza serhildêran roj bi roj xurttir dibû, gelek kurdên ku piştî serhildana Şêx Seîd xwe nedabûn destê dewletê gihîştibûn Araradê. Serokên wek Têmirê Şemkî, Şex Evdilkaqir, ronakbîr Numan Efendi jî ji warê sirgûniya xwe reviyabûn û hatibûn Araradê. Ji payîza 1927’an pêve navdarên wek Şêx Zahir, Altundîş Osman, Ferzende Begê Hesenî, Xalis Begê Sîpikî, Memo û Nadir Begên Heyderî, Edoyê Ezîzî, Reşoyê Silo, Yadoyê Dilxêrî, Seyîd Resul, Sêvdîn Beg, Şêx Fewzî, Evlê Xelef, Seyîdxan, Elîcan hin nûnerên ermeniyan û ronakbîrên wek Osman Sebrî û Hesen Hişyar jî gihîştibûn çiyayên Araradê.

Bi hatina nûnerê Xoybûnê Îhsan Nûrî Paşa rewşa siyasî û leşkerî ya berxwedanê rêkûpêktir û bi hêztir bû. Li gor daxwazên Xoybûnê li Agirî hikumetek, konseyeke leşkerî û hin saziyên civakî hatibûn avakirin. Îbrahîm Axa wek serokê hikumetê, Îhsan Nûrî Paşa wek serokerkanê giştî, Şêx Evdilqadir ji bo kar û barên dadmendiyê, û bi berdewamî neqil dike jî: "Serkêşiya tevgerê Îbrahîm Paşa Haskê Têlî dike û wek pisporê leşkerî ê Xoybûnê wek fermandarê giştî jî general Îhsan Nûrî Paşa hatiye hilbijartin." Serbazê tirk Zühdü Güven jî di bîranînên xwe de dinivîse ku Îbrahîm Axa di nav gel de mirovekî gelek rûmetdar e, goreyî nîşana Xoybûnê kincan li xwe dike û Îhsan Nûrî Paşa ji serokên desteyen re emirnameyên xwe bi kurdî dinivîse, wî yek ji wan bi desxistiye û daye wergerandinê jî. Serhildêran li seranserê Serhedê de çalakiyên siyasî û leşkerî pêkdianîn.

Di seranserê 5 salên berxwedanê de di navbera kurdan û nûnerên fermî yên dewletê de gelek hevdîtin û axaftin jî pêkhatibûn û ji hevdu re gelek name jî şiyandibûn. Waliyê Bazîdê Sureyya ê ku ji tirsa serhildêran li Qerekilîsê dima di roja 28.21928’an de ji Îbrahîm Axa re nameyek şiyandibû û tê de gotibû ku ew dizane, wekî Îbrahîm axa mirovekî binamûs, rastgo, wêrek û bêsûc e û divê ew teslîm bibe û pêre kesên wek Numan Efendî û İhsan Nûrî jî bo vê serwext bike. Îbrahim Axa jî di nameya xwe de bi kurtasî weha bersîv daye wî:

"Hûn di nameya xwe de destnîşan dikin ku hûn teslîmbûna me qebûkl dikin. Lê belê me ji hîç dezgehekê daxwaza teslîmbûnê nekiriye û em teslîmbûnê tucarî nafikikirin jî.

Ger bi rastî jî yasayeke efûyê hebe, divê ev ji bo her kesî û goreyî yasayên şaristaniya serdema me be. Lê ger armanc ew be ku bi riya efûyê hin mirovên nezan bên xapandin, ev pirsgirêkeke din e. Wê demê divê we serî li mirovên wek me yên xwedî tecrubeyên têr û tijî, ji qewimandinan haydar û dinyadîtî neda. Hûn êdî mirovên wisa nezan tu cihekî nikarin bibînin. Divê rêvebirên bilind yên dewleta tirk vê rastiyê bibînin û xwe bi vêya bidin bawer kirin.

Ger ku efûyeke rasteqîn hebe, hûn çima giregirên me tev jin û zarokên wan yên ku bêsûc in û ev du sal in bêçare bûne paşde naşînin cîwarên wan? Tenê dema ku hemû sirgûniyên me vegerên warên xwe wê demê hatina me jî dikare bikeve rojevê. "

Nivîskar a îngiliz Rosita Forbes ku di gulana 1929’an de tev şandekê li Îranê hatibû nêzikî çiyayên Agirî di bîranên xwe ên bi sernavê Şer li Aratatê de van agahiyan dinivîse:

"Fermandarê tevgera Araradê Îhsan Nûrî Beg e yê ku berê di artêşa Tirkiyê de serbaz bû û di dema serhildana Şêx Seîd de jî rola wî hebû. Lê mêrxasê herêmê serhildêrekî siruştî ê bi navê Îbrahim Axa Hesikê Têlî ye. Wî serhildan daye destpêkirin û wek xwediyê kesayetiyeke ku mirovan metelmayî dike di hemû bûyeran de bi wêrekî xwe dide pêş. Di şerên ku ew tê de beşdar dibe b carekê di sê eniyên cûda bi hevre şer dimeşîne.

Ji bona Dûrziyan rêberê wan Sultan el Atrash çi be, ji bo kurdên li derdorê van sînoran de Îbrahîm Axa jî wisa ye. Navê Îbrahîm Axa wek destanan belav bûye û navdariya wî ewqas bandor li ser jinan jî hiştiye ku ew sîlehên birîndaran hildigrin û tev mêran mil bi mil şer dikin. Wek diyar e ev yek kêfxweşiyeke mezin dide jinan, ji ber ku dema ew di nav xwînê de lê bi devkenî vedigerin gundên xwe dibêjin: 'Tirsa me ji dijmin tune ye, dema em hatina wan dibînin kena me tê. Tu artêşek nikare li vir xwe nîzikî me bike."

Robert Schlickewitz di şiroveya xwe ya derbarê xebateke dîrokzanê navdar I. Franz Karl Endres de van agahiyan destnîşan dike:

"Partîzan û siyasetmedarê kurd Îbrahim Ağa Hesikê Têlî di dema şerê cîhanê ê pêşîn de di eniya Kafkayayê de li dijî rûsan şer kir û piştî sala 1918 an li Bazîdê cîwar bû û karê bazirganiyê meşand. Di sala 1926 an de dijî dewletê serhildan kir û dema kurdan bangewaziya Komara Agiriyê kirin ew wek serokê wê hat hilbijartin. Her çiqas ew piştî têkbirina serhildanê reviya Îranê jî, wî di şereke di navbera kurdan û hêzên dewleta Îranê ya sala 1931 an de jiyana xwe ji dest da.."

Dewletê ji bo têkbirina berxwedanê bi Îranê re li hev kir û di payîzda 1930’an de bi hêzeke ji bêtirî 30 hezar leşker û gelek balafirên şer êriş bir ser hemû herêmên li Serhedê. Li Geliyê Zîlan dora 200 gund hatin şewitandin û nêzikî 50 hazar mirovên sivîl qetilkirin. Piştre şer êdî li ser çiyayên Araradê giran bû, di dawiyê de rêberên wek Îhsan Nûrî Paşa, Şêx Evdilqadir, Ferzende, Memed û Nadir Beg xwe ji êrişan rizgar kirin û derbasê Îranê bûn. Îbrahîm Axa heta demekê jî şer berdewam kir û goreyi hin çavkaniyên nivîskî û devkî di dawiyê de leşkerên Îranê ew dorpêç kirin ku ew bi gullê topê şehîd bû. Di berxwedana Agirî de gelek mirovên ji malbata Îbrahîm Axa jî şehîd bûbûn. Piştî vê dewletên tirk û îranî yên ku wê demê li ser têkbirina serhildanên Ararat û Simko Axa li hev kiribûn li gelek cîwaran komkujî pêkanîn. Vê yekê nivîskar D. G. von Wesendonk jî di xebata xwe ya ji



Têmir Ağa jî wek serbazê cendirman û ji bo her desteya şerkaran jî rêvebirên wan hatibûn hilbijartin. Al û sirûdeke wan a netewî hebû û bi aleteke ji aliyê Xoybûnê peydakirî ve jî rojnameyên Gaziya Welat û Agirî dihatin çapkirin. Ji bilî van serbazê tirk Reşad Hallı dinivîse ku wan li wir belavokek bi sernavê Agirî êgir dibarîne weşadiye û ji welatên derve re şiyandiye. Her weha li gelek warên wek Ercîş û Zîlan tamsîlkariyên Xoybûnê hatibûn damezirandin. Ji bo têkiliya di navbera baregeha navendî û a desteyên di nav çiyayên Araradê de xeteke têlefonê jî hatibû avakirin. Schultheiss ê alman di sala 1930 an di pirtûka Salnameya Dîroka Ewrûpa de dinivîse ku serhildêran di nav çiyayê Tendûrekê de baregeha duyem avakiribûn û berpirsiyarê wê jî Memed Begê ê kurê Huseyîn Paşa bûye

# Stêrka geş a kurdî: Weşanxaneya Emû Elewî

Mehmet Emîn Kan

Dagirkerên Kurdistanê, Îran, Iraq, Sûriye û Tirkiye digel tepeserî û serkutiya li ser civakê, rê li ber geşedana zimanê kurdî jî girtin û nexwestin kurdî di nava kurdan de bê axaftin û nivîsandin. Dewletên dagirker di wê baweriyê de bûn ku çand, ziman û kelepora kurdî qedîme û ger ku ew kelepûr û zimanê kurdî ji holê rakin, rê li ber weşanên wan bigrin ew ê kurd jî ji holê rabin. Ji bo têkbirina kurdî û bişavtina kurdan her çend polîtîka û rêbazên cihê hatibin bikaranîn jî kurdan dev ji zimanê xwe bernedaye û hewl dane ku zimanê xwe biparêzin û geş bikin.



## Kurdî geş dibe

Her wiha di çarçoveya 15'ê Gulanê Roja Zimanê Kurdî de li çar parçeyên Kurdistanê, li dîasporayê roja zimanê kurdî pîroz kirin û li ser ziman panel û semîner li dar xistin. Li hêla din Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê jî bi minasebeta geşbûn û pêşdeçûna kurdî yekemîn pêşangeha pirtûkan li dar xist û di semîner û panelên pêşangehê de nivîskar û xwînerên kurd li hev civiyan. Kurdên Xorasanê yên bi pişaftina Komara Îranê re rû bi rû mane jî bi vekirina weşanxane û saziyên zimên hewl didin ku polîtikaya Komara Îranê ya asîmilasyonê ji holê rakin û kurdî di nava xelkê de geş bikin. Edîtor û berpirsê Weşanxaneya Emû Elewî Yeyha Elewî Ferd ji BasNûçeyê re axivî û behsa xebatên weşanxaneyê yên li ser zimên kir. Elewî Ferd da zanîn ku wî Weşanxaneya Emû Elewî di sala 2010'an de avakiriye û heta niha zêdetirî 20 kitêbên kurdî çapkiriye.

## Weşangeriyeke bieşq

Di berdewamiya axaftina xwe de Elewî Ferd ragihand ku li Îran û Rojhilatê Kurdistanê qedexeya li ser zimanê kurdî roj bi roj kêmtir dibe û ger ku wiha berdewam bike di demeke nêz de wê ev qedexe bi tevahî ji holê rabe, lewre qanûnên Îranê ên ku li pêşiya geşedana zimanê kurdî asteng in, ji holê radibin û êdî ger ku weşangerên kurd bixwazin dikarin pirtûkên kurdî belav bikin. Ferd wiha got: "Em bi evîn û dilşadiyeke mezin pirtûkên kurdî çap dikin û mebesta me ne ew e ku em ji belavkirina pirtûkan pere qezenc bikin û dewlemend bibin; Armanca me geşkirin û pirbelavkirina pirtûkên kurdî ye. Ev çend sal in çapkirin û weşandina pirtûkên ku ne bi zimanê farisî ne, li Îranê ne qedexe ye, lê belê ji ber ku li Îranê hejmara pirtûkên bi kurdî pir kêm in, em vê kêmasî û qelsiyê wek ya kurdan bixwe dibînin. Ger ku weşanxane û weşangerên kurd bixwazin, dikarin pirtûkên kurdî biweşînin. Lê hevalên me yên kurd li Îranê keda xwe navêjin ser weşandina pirtûkên kurdî. Da ku ji nihêrîna aborî û firotinê, gelek sedem û şaşî hene. Ez li weşanxaneya xwe van pirtûkan bi dilxweşî û evînê diweşînim ne ji bo qezenca pereyên zêde."




## Hewcedarî bi piştgiriyê heye

Elewî Ferd ragihand ku ew "kurdên jibîrbûyî ne" û enstîtû û dezgehên li ser ziman ê kurdî li wan xwedî dernakevin da ku ew jî karê baştir bikin. Elewî Ferd eşkere jî kir ku divê piştgirî li wan bê kirin û ew ji bo festîval û fûarên çandê bênn vexwandin da ku ew jî behsa xebatênn xwe bikin û behsa kurdên Xorasanê bikin Elewî Ferd wiha berdewam kir: "Daxwazek min ji dezgeh û enistîtoyên kurdî heye ku li çalakên çandî ê li Îranê xwedî derkevin. Alîkariya aborî û fikrî li weşangeran, nivîskaran û hunermendan pêwîst e. Ez bawerim ku em kurdên Îranê li fistîvalan, konfiransan û gengeşên edebî bên vexwendin. Yanê em bi kurtî kurdên jibîrbûyî ne. Ez li fistîvalên farisî bi caran hatime xelatkirin û vexwendin, lê li fistîvalên kurdî carek ji nehatime dîtin."

Nivîskar û weşanger Elewî Ferd behsa asîmîlasyona li ser kurdên Rojhilatê Kurdistanê û Xorasanê jî kir û da bilêv kir ku roj bi roj tesîra farisî ji ser xelkê kurd radibe û televîzyona bi navê SAHARê jî bi kurdî weşanê dike û li dewletê ji bo weşana radyoyê jî tenê saetek destûr daye. Elewî Ferd da zanîn ku bi lehçeya soranî gellek kovarên kurdî jî hene û ew êdî dixwazin sazî dezgeh û enstîtûyên ziman jî vekin. Elewî Ferd wiha berdewam kir: "Çend sal in ku dewleta Îranê, qedexebûna pirtûkên ne farisî hilanîne. Hêdî hêdî, asîmîlasyon bê buha dibe û rê bo xebatên kurdî jî berfirehtir dibe. Ez hêvîdar im ku rojên bê, cila asîmîlasyon bê qutkirin. Da ku em dibistan û zanîngeh û kovar û hinek tiştên din jî dixwazin. Li Îranê tenê kenala SAHAR TV he ye ku taybet bi zimanê kurdî ye. Hinek kovar bi zimanê kurdiya soranî he ne, lê bi zimanê kurdiya kurmancî tuneye. Tenê hinek pirtûk bi zimanê kurdî tên weşandin ku gelek kêm in.

Her wiha Emû Elewî li ser pirtûkên kurdî yên ku wergerî farisî ji kirine jî rawestiya û eşkere kir ku ew dixwazin haya xelkê faris jî ji edebiyata kurdî û lîteratûra kurdî hebe û bi wê minasebetê jî dest bi wergera kitêbên kurdî kirine. Elewî Ferd li ser geşbûna weşana kurdî jî rawestiya û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Em dixwazin edebiyata kurdî di nav farisan de jî bê zanîn. Bi wê mebestê em romanên kurdî û hin lêkolînên kurdî werdigerînin ser farisî jî."

## Pirtûkên Weşanxaneya Emû Elewî ev in:

1.Şelpe û Sêv: Komhelbestên bo Nûciwanan, Yehya Elewîferd
2.Bajarê Mîriyan: Komhelbestên bo zarokan, Yehya Elewîferd
3.Nîşan û Dawet: Ji pênûsa Amed Tîgrîsî,Ebas Ferhadî Tûpkanlû
4.Serpûhatên Kurdan: Ji pênûsa Seydayê Tîrêj, Ebas Ferhadî Tûpkanlû
5.Hînbûna Zimanê Kurdî bi du rênivîsan: ji pênûsa Mûsa Qulîkî Mîlan
6.Diyar û Dutar, lêkolînek li ser sêxiştiyên devokiyên kurdên Xorasnê, ji pênûsa Ismayîl Husênpûr
7.Çîrokên Kundikê 1û2, komçîrokên bo zarokan, ji pênûsa Benûşe Elewîferd
8.Rêzimana Kurdiya Kurmancî, ji pênûsa JoyceBlauû Weysî Barak, Elî Pakserêşt
9.Sêxiştên Modern, nivîsarek li ser Modernkirina sêxiştiyan, ji pênûsa Yehya Elewîferd
10.Xezal, Sîma Semend, werger bi farisî: Ebdulla Arxa
11.Di Folklora Kurdî de Serdestiyeke Jinan, Rohat , werger bi Farisî: Ebdulla Arxa
12.Bîra Qederê, Mihemed Uzun, wergera: Celal Osmaniyan
13.Siya Evînê, Mihemed Uzun, wergera: Celal Osmaniyan
14.Reş û Sipî, Îbrahîm Seydo Aydogan, wergera: Mecîd Baqirî
15.Romana Kurdî, Îbrahîm Seydo Aydogan, wergera: Mirad Birûkî Mîlan
16.Dê û Dêmarî, Egîtê Xudo, wergera: Mirad Birûkî Mîlan
17.Şivanê Kurmancan, Erebê Şemo, wergera: Nahîd Ekberzade
18.Gava ku masî tî dibin, Helîm Yûsiv, wergera: Karwan Nehrî
19.Mîrname, Jan Dost
20.Martînê Bextewer, Jan Dost
21.3gav û 3darek, Jan Dost
22.Keçka delal, çîrokek bo zarokan, Qarşî
23.Mêrikê reş, çîrokek dîrokî, Mûsa Senayîfer







Pêşangeha Pirtûkan

# Hêviya kurdewariyê geş bû

Tuwanê Dodkî

Di Yekemîn Pêşangeha Pirtûkan a Amedê ku bi çalakiyên cihê û bi coşeke mezin dom kir de, li gel pêşandana pirtûkan çalakiyên cihê yên di derbarê cîhana wêjeyî, hunerî, siyasî û aktuelî û bi beşdariya gellek nivîskar, rewşenbîr û hunermendan serkeftî bû. Nivîskarên kurdînûs û weşanxaneyên kurd bi vê pêşangehê pir kêfxweş in û gazina; 'Çima ji berê ve ev xebat pêk nehat?' kirin û vê pêşangehê weke gaveke dîrokî nirxandin.

Yekemîn Pêşangeha Pirtûkan a Amedê ku bi rêxistinkirina hêrsa rewşenbîriya kurd a li dij helwesta Şirketa TÜYAP'ê ku Fûara xwe ya Amedê ya ku ji sala 2011'an ve her sal pêk dihanî betal kir pêk hat, encamên baş derdixe holê. Pêşangeha ku ji 70'an zêdetir weşanxane beşdar bûne, roja sêşema çûyî bi merasîma vekirinê destpê kir. Di merasîmê de Hevşaredarên Amedê Firat Anli û Gultan Kişanak û organîzatorên pêşangehê di derbarê pêşangehê de nêrîn û daxwazên xwe anîn ziman û hêvî kirin ku ev pêşangeh ji bo rewşenbîriya kurd bibe bingeheke xurt. Piştî merasîma vekirinê pêşangehê destpê kir. Di vê pêşangeha ku li gel weşanxaneyên kurd hin weşanxaneyên tirk jî beşdar bûne de, hin weşanxaneyên kurd ên li Ewropayê ku ji bo kurdên ewropayê kar û xebatan pêk tînin û hin weşanxaneyên ku ji bê derfetiyan di malan de karê xwe dimeşînin jî beşdar bûne hene.

Edîtorê weşanxaneya 'Hîva'yê Helbestkar Berfo Barîn da zanîn ku ji ber bêderfetiyan ew li gel weşanger Mem Bawer, Ridwan Polat û Mûrad Yapici mala xwe wek weşanxane bikar tînin û eger derfetên wan baştir bibin ew ê weşanxaneya xwe derbasî ciheke nû bikin. Barîn diyar kir ku ji ber ew zarokan wek nifşên vejînê dibînin û ji bo siberoja zimanekî rola hînbûna zarokan a zimanî grîng dibînin ew taybet pirtûkên zarokan diweşînin. Edîtorê Weşanxaneya Hîva, Berfo Barîn ku



heft meh berê dest bi karê weşanê kirine ragihand ku ev pêşangeh, ji ber ku li gora şêwr û daxwaza weşanxaneyên kurd hatiye pêkanîn kurdewartir e, ew ji vê yekê pir kêfxweş in û ji ber ku van derfetan daye weşanxaneyên kurd spasî li şaredariya Amedê û kes û dezgehên ku di vê bareyê de ked dane kir.

## 'Danasîn baş nehatiye kirin lê hêvî heye'

Her çiqas weşanxaneyên kurd ji vê pêşangehê pir dilxweş û hêvîdar bin jî di derbarê danasîna pêşangehê de weşangerên ku hin fikaran tînin ziman jî hene. Xwediyê Weşanxaneya Sîtav'ê Nivîskar Qahir Bateyî jî di derbarê fûarên pirtûkan ên ku TÜYAP'ê li Amedê pêk dihanî de da zanîn ku TÜYAP'ê di fûarên xwe de grîngî nedida weşanxaneyên kurd, cihên ne xweş û derkenar ji wan re terxan dikir û ev yek dibû sedemê gazinên weşanxaneyên kurd, di vê pêşangehê de ev pirsgirêk ji holê rabûye lê belê li gel vê yekê jî ji ber ku danasîna pêşangehê baş nehatiye kirin baldarî ne li gor dilê wan e û wan hêviya baldariyeke pir mezintir kiriye.

Xwedî û Edîtorê Weşanxaneya Roşna ku weşana berhemên kirdmancî dike, Nivîskar û Wergêr Roşan Lezgîn ku bi xebat û lêkolînên xwe yên wêjeyî tê nasîn jî diyar kir ku ji ber fûarên TÜYAP'ê li qada fûarê bû û li derveyê bajar bû çûnûhata wê pir zehmet bûye, lê belê ji ber ku Pêşangeha pirtûkan li qada Sumerparkê ku li navenda bajar e pêk hatiye di warê çûnûhatê de pir baştir bûye. Roşan Lezgîn jî weke Qahir Bateyî heman fikarê hanî ziman û got: "Her çiqas li nav bajar afîş û broşûrên pêşangehê hatibin daleqandin jî, bi raya min li gor fûarên TÜYAP'ê danasîna vê pêşangehê qelstir hatiye kirin" Roşan Lezgîn di derbarê danasînê de diyar kir ku divê danasîn ne tenê li navenda bajarê Amedê, her wiha li bajarên nêzîkê Amedê yên wek Batman, Çewlig û navçeyan jî baş bihata kirin. Lezgîn wiha dom kir: "Dema fûarên TÜYAP'ê pêk dihatin, beriya fûar pêk bê, hemû cîhana wêjeyî ya Tirkiyeyê û meraqdarên wêjeyê ji fûarê agahdar dibûn. Di vê pêşangehê de ji ber ku bi derfetên kêm ev çend danasîn hatiye kirin, baldarî hinekî kêm e lê belê dîsa jî, ji bo pêşangehên salên pêş, hêviyeke mezin dide mirov û em bawer dikin ku di salên dahatê de wê hin baştir û baldartir bin" Lezgîn balê kêşa ser nêzîkahiya TÜYAP'ê ya weşanxaneyên kurd û ragihand ku TÜYAP'ê di fûarên xwe de cihên ne xweş dida weşanxaneyên kurd, lê belê şaredarî û organîzatorên pêşangehê li gel hemû bêderfetiyan rewşa wan dipirsin û heta ji destê wan tê alîkariya wan dikin. Roşan Lezgîn, ji ber vê helwesta erênî ya şaredarî û organîzatoran spasiyên xwe pêşkêşî wan kir û anî ziman ku ev helwesta erênî nîşane ye ku wê pêşangehên siberojê hin baştir û serkeftîtir pêk bên.

Berpirsyarê Weşanxaneya 'Na'yê Ulku Bîngol jî ragihand ku li gora fûarên TÜYAP'ê di vê pêşangehê de her çiqas di warê profesyoneliyê de kêmasî hebin jî, ji ber ku di fûarên TÜYAP'ê de ew xwe wek biyan hest dikin û di vê pêşangehê de atmosfereke kurdewar heye, ew kêfxweştir dibin. Bîngol, anî ziman ku ji ber organîzasyoneke kurdan e û hesta xwebixweyî der dike ev pêşangeh hêviyên wan geştir dike û got: "Ev xweşbîniya ku bi vê pêşangehê der bûye ji bo siberojê destkeftiyên mezin in"

## 'Divê kurd li hêviya xelqê nemînin'

Nivîskar û Dîroknas Şakir Epozdemîr ku ji destpêkê ve pêşangehê şopand û beşdarî li bernameya çalakiyên wêjeyî yên pêşangehê kir jî da zanîn ku cihê kêfxweşiyê ye ku kurd li hêviya xelqê nemînin û bi serê xwe kar û organîzasyonên wiha pêk bînin. Epozdemîr got: "Her çiqas cihê pêşangehê weke qada fûarê mezin nebe jî pir bi rêk û pêk û serkeftî ye. Divê kurd li hêviya xelqê nemînin û em karê xwe bikin. Ji ber vê yekê ez şaredariyê pîroz dikim ku dikare ji bin karekî wiha derketiye" Di derbarê mezinbûna baldariya ji pirtûkên kurdî re jî Epozdemîr diyar kir ku jixwe divê wiha be û sal bi sal baldariya berhemên kurdî zêdetir bibe. Epozdemîr got: "Gelê kurd heta zemîna xwendin û nivîsandina xwe pihêt neke nikare bigihîje armanca xwe"

Nivîskar Mele Îmaledîn Dûdilî jî de derbarê pêşangehê de da zanîn ku berê ji bilî mewlûda kurdî û Mem û Zîn'a Ahmedê Xanî tu berhemên kurdî tune bûn û çend berhemên ku hebûn jî qedexe bûn. Dûdilî geşedana wêje û rewşenbîriya kurd wek şanaziyê pesindar kir û got: " Şukur ji xwedê re ku îro di her beşên wêjeyê de, di warê ziman, perwerdehiya zarokan, dîrok, zanist û hemû qadan de berhemên kurdî çêbûne û roj bi roj zêdetir dibin. Ev pêşketineke baş û qenc e. Ji ber vê pêşangehê jî ez spasiyên xwe pêşkêşî Şaredariya Amedê û kes û dezgehên ku helwestiyane û ji bo pêkanîna vê pêşangehê ked dane dikim"

Yekemîn Pêşangeha Pirtûkan a Amedê ku li gel pêşandana pirtûkan, her wiha bi çalakiyên xwe yên wek panêl û semînerên di derbarê hemû beşên çand û hunerê, dîrok, sînema, zanist û konsêrtên mûzîkê hate dewlemendtirkirin, li gel hin kêmasiyên xwe jî ji bo salên pêş, cîhana rewşenbîrî ya kurd hêvîdartir kir û vê hişmendiyê pêk anî ku kurd bi serê xwe jî dikarin karên baş û bi kêr hatî pêk bînin.

## Pervîn Çakar:

# Dengbêjî û opera nêzî hev in

**Salih Batırhan**

Hunermenda ciwan a kurd Pervîn Çakar ku piştî kutakirina perwerdahiya xwe ya hunerî ji ber nebûna derfetên hunerî berê xwe daye Ewropa û li welatên rojavayî weke 'stêrkeke operayê' tê bi navkirin diyar dike ku di folklor û kultura kurdî de bo gelek bêşên hunerê çavkanî hene lê ti xebat li ser nehatine kirin.

Çakar ku li ser operayê xebatên berfireh dike û amadekariyên ku bi kurdî operayê bike dike anî ziman ku di dengbêjî û operayê de gelek tiştên ku pir nêzî hev in hene û divê bo ku dengbêjî û çanda kurdan li cîhanê bê nasandin divê saziyên kurdan derfetan biafirînin. Çakar da zanîn ku xeyala we ya herî mezin ew e ku rojekê operayeke bi kurdî li ser dikê pêşkêşî cîhanê bike.

**Rêya te û operayê çawa gihişt hev tu dikarî behsa vê rêwîtiyê bikî?**

Di 14 saliya xwe de min dest bi gotina strana kir lê wê demê hîin min opera nasnedikir. Naskirina min ya operayê weki minaka sahneya filmekî bû. Min dibistana amadehiyê ya Hunerên Ciwan a Anadolûyê xwend. Di wan salên dibistanê de jî min gelek ji nivisandinê hez dikir. Ez tevlî peşbaziyekê bûm û min qezenç kir. Ji bo ez xelata xwe bistînim çûme Enqere'yê. Şeva xelatê ji gelek bajaran gelek ciwan amadebûn. Ji ber ku ez ji dibistaneke mûzîkê hatibûm bala organizatore peşbaziyê kişandibû. We şevê daxwaziya straneké ji min kirin, min jî stranek got. Berpirsiyarê peşbaziyê ji min re got ku dengê te geleki bi kêri operayê te û ji min re got ku tu Maria Callas nasdiki an na? Dema ku min bersiv da ku ez Maria Callas nasnakim matmayi ma. Ji koleksiyona xwe CD'yeke Maria Callas diyari min kir. Lê ji ber ku compitura min tunebû min li CD'yê guhdar nekir, piştî 4 salan dema salên ku ez li zaningehêbûm min gûhdarkir. Min Zanîngeha Gazi ya Enqereyê beşa mûzîkê kuta kiriyê. Wê demê du hevalên min daxwaz kirin ku ez bi wan re herim temaşekirina operayê. Navê opera beriya salan min bihistibû, loma bi kelecanekê mezin ez çûme temaşekirina operayê. Dema ku min ew opera temaşekir daxwaziya min a yekemîn ku rojekê ez jî bibim weki wan hûnermendên operayê. Ez pir bi kelecanbûm û ez aşiqê vê beşa hûnerê bûm. Rêya min û naskirina min ya operayê bi vî awayi dest pê kir.

**Tu di hevpeyvînên xwe de behsa destan û mîtolojiyên kurdan dikî û dibêjî ew jî ji operaya re musaîd in. Gelo em çawa dikarin wan destanên xwe bikin wek opera?**

Dengbêj pewîst e di mûzika kurdî de di asta herî bilind de bin. Ev kevneşopî ji dema Homeros tê. Min di kevneşopiya dengbêjiyê de şopên operayê ditin. Wekî reçîtatîfan(axaftin), ku mirov bala xwe didê çirokekê û ew lehengên di nava we çirokê de, paşî bi deng vegotina vê çirokê dest pê dikê. Ez dibêm bi tenê ferqa kevneşopiya dengbêjiyê ji operayê ku nayê listin weki operayê, bi tenê çirok ji aliyê mirovekî yan ji mirovan ve tê vegotin. Di operayê de ev çirok ji hêla helbestvana ve tê çekirin, di nava listikê de mirovên ku navê wan derbas dibê rolên xwe dibêjin, orkestra, kostûm, dekor û tiştên herwiha di nav de ne. Di kevneşopiya dengbêjiyê de bikaranina teknîka deng û teknîika operayê her çiqas ji hev cûda be jî nêzî hev e. Destan û mîtolojî ez dibêm pewîste ji hêla helebestvanên profesyonel ve bên çekirin û peşkeşî hûnera cihanê bê kirin. Mixabin hîn heta iro operayeke kurdan nîn e. Ji ber ku şaxeke hûnerî ya ku maliyeta we bilind e û helbestvanê wê kêm in yan jî ji ber ku durîi mîtolojiyên kurdan e nayên çekirin. Heviya min ew e ku berî rojekê operayeke kurdî werei çêkirin û bê peşkêşkirin ji bo hûnera cîhanê. Daxwaziya min ew e ku ez di operayeke kurdî de cih bigrim. Destanên wek Mem û Zîn, Zembilfroş, Siyabend û Xecê û hwd. heger piştgiriyêke mezin bê kirin çima di mihrîcanên cihanê de û di sahneyên operayê de cih negre. Rêya ku çanda kurdî bê nasandin di nava hûnerê re derbas dibe.



**Li hêla din te gellek stranên kurdî yên gelerî gellekî serkeftî û bi awayekî opera xwendine di pêşerojê de tu difikirî albumekê bi vî rengî belav bikî ?**

Sedema ku ez stranên kurdî bi teknêka operayê dibêjim ji ber ku heya îro operayeke kurdî nîn e û bi vê riyê ez bihêlim ku gel ji operayê hez bike nêzî xwe bibîne. Ez gelekî dixwazim ku albûmekê çê bikim, ez hevî dikim ku di demek nêz de heviya min dê pêk were.

**Ez dixwazim bêm ser dengbêjiyê tesîra dengbêjiyê li ser muzîka te çê bû, gelo em dikarin bêjin dengbêjiya kurdî jî weke operayê ye?**

Opera bi giştî bi her zimanî hatiye çêkirin. Wekî min anî ziman bi zimanê kurdî heta îro nehatiye çêkirin. Bi salan min ji bo operayê perwerde stand û ez hûnera xwe li welatê Îtlya û welatên din berdewan dikim. Ez xwe bêhtir nêzî çanda xwe dibînim. Bi salanê ez ji welatê xwe û ji çanda xwe dûr jiyam. Bêrîkirineke mezin di dilê min de heye. Dema ku li ser dikê ez bi zimanên biyanî opera dibêjim li mal jî ez bi kurdî strana dibêjim û ez bêhtir xwe nêzî mûzika kurdî dibînim. Ez çiqas gûhdar dikim û lêkolînan dikim kêfxweşiyeke mezin dide min û ez dixwazim hin tiştên mezin bikim. Min biryar daye ku ez stranên kurdî bi teknîka operayê bejim. Em nikarin bêjin ku dengbêjî opera ye. Lê çi qas ji hev cûda be jî nêzi hev e.

**Pervîn Xan te gellek xelat stendine û te di gellek festîvalên navneteweyî yên muzîkê de cih girtiye. Pêşniyarên te ji hunermendên kurd re çi ye, gelo hunermendên kurd çawa dikarin muzîka kurdî li dinyayê bidin nasandin?**

Dema ku min biryara vê rêyê stend min li pişt xwe evînêke mezin hişt û ji welatê xwe çûm. Ew xelatên ku min stendine û tiştên ku min heta îro kiriye ez diyarî gelê xwe dikim. Ez hevî dikim ku ew ji bo hûnermendên ciwan bibin îlham. Peşniyarên min ku gelekî li ser bê xebitîn, hilberînin û dilnizmiyê ji dest bernedin ên ku dil dabê vî karî û mirovên ku ked dane, ez dixwazim ku li hemberî wan rêz bê girtin. Berî her tiştî gerek ji xwe bawer bikin û paşê di karê hûnerê de serkeftinê dixwazim. Girîngiya heri mezin ew e ku mûzika kurdî û kevneşopiya xwe bi kevneşopiya rojavayî wek sentezekê nezî hev bibe. Kevneşopiya dengbêjiyê li ser dika operayê were gotin, helbestên senfonîk ji hêla orkestrayan ve were lexistin û bi tevlîbûna projeyên hevpar bê çêkirin. Lê belê mûzika kurdî em karin bi rêya hûnerê bidin nasandin û belav bikin. Ji bo vê jî kedek mezin pewist e. Orkestrayên mezin pewîst e werin damezirandin, salonnê şanoyan werin avakirin. Ji bo perwerdehiya mûzîkê jî bi awayekî profesyonelî xebat bêne kirin.

**Pervîn Çakar kî ye?**

(Soprano) Hunermend Pervîn Çakar di sala 1981'an de li Mêrdînê hatiye dinyayê. Di sala 1999'an de ji dibistana Amadehiyê ya Hunerên Ciwan a Anadolûyê ya Amedê mezûn bûye. Di sala 2003'yan de Beşa Muzîkê ya Zanîngeha Gaziyê ya Enqereyê kuta kiriye. Bi Oylun Erdayî re dest bi xebatên xwe yên operayê kiriye. Paşê jî perwerdehiya xwe li Îtalyayê li Accademia d'Arte Liricayê domandiye. Di sala 2008'an de ji Konservatuara Dewletê ya Perugîayê di asta " heri baş" de destûrname wergirtiye. Beşdarî xebatên masterclassên hunermendên operayê yên ku li cîhanê navdar in ên wek Luciana Serra, Lella Cuberli, Montserrat Caballè, Salvatore Fisichella, Mietta Sighele, Veriano Lucchetti û Tiziana Fabbricini bû. Hunermendê di gelek pêşbaziya Operayê yên girîng û bi prestîj de xelat wergirtine.